

ÇAPA EWROPA

RÛDAW

ROJNAMEYA KURDÊN DIYASPORA


*Kejal* *perdeyê li ser nehêniyan radike*

» 9



# SIYASETA ŞAŞ

## Ha ji we re encam

4 / 5 »

Wêne: Reuters


Hejmar / Nr. 212
22 Tebax / August 2013



| | | |
|---|---|---|
| Deutschland | 1,50 | Euro |
| Österreich | 1,50 | Euro |
| Belgium | 1,50 | Euro |
| Danmark | 15,00 | DKK |
| France | 1,50 | Euro |
| Nederland | 1,80 | Euro |
| Norway | 15 | NOK |
| Schweiz | 2,70 | CHF |
| Sverige | 21,00 | SEK |

www.rudaw.eu
info@rudaw.eu


### 9 sal in ku li Almanyayê mêşên hingivîn xwedî dike

» 6



### Şêrko Bêkes: Em di krîzê de ne

» 10 / 11

# Dîskotêkek divê 1000 Euro bide Kurdekî

**Köln (Rûdaw) -** Li bajarê Hannover yê Almanyayê par ciwanekî kurd xwest ku derbasî dîskotekekê bibe. Pêşderên dîskotekê bi hênceta ku cilên wî ne baş in nehiştin ew bikeve hundir. Ciwanê kurd jî ev yek wek helwesteke nijadperestî dît û xwediyê dîskotêkê da dadgehê. Dadgeha herêmî ya Hannoverê jî maf da ciwanê kurd, herwiha hem xwediyê dîskotekê ceza kir û hem jî hişyarî dayê.

Di Çileya par seet 23.30ê şevê de ciwanekî kurd xwest ku derbasî dîskotekekê bibe, lê bi hênceta ku cilên wî nebaş in destûra ketina wî ya hundirê dîskotêkê nehat dayin. Li gor ciwanê kurd û şahidan, pêşderan bi hêncetên cûrbicûr tenê rê li ciwanên esilbiyanî girtine û kesên alman bi hêsanî derbasî hundirê dîskotêkê bûne. Wî ciwanê kurd jî bi sedema ku ew li ber deriyê dîskotêkê hatiye dîskrîmînekirin, xwediyê dîskotêkê da dadgehê. Dadgeha herêmî ya bajarê Hannoverê heftiya derbasbûyî biryara xwe da û ciwanê kurd mafdar dît. Li gor biryara dadgehê, xwediyê dîskotêkê divê hezar Euro tezmînat bide ciwanê kurd. Dadgehê ji îfadeyên ciwanê kurd û şahidan bawer kir û biryar stand ku eger heman helwest dubare bibe, xwediyê dîskotêkê wê bi heta 250 hezar Euro were cezakirin.

Li dîskotêkên Almanyayê helwestên bi vî rengî yên birêveberên dîskotêkan gellek caran dibin sedema nerazîbûna kesên ku paşve tên şandin û ku li derveyî dîskotêkan şer derkevin.





## Sûrî di reza 2. de ne

# Serîlêdanên penaberiyê duqet bûne

**Köln (Rûdaw) -** Hejmara bilind ya kesên ku îsal li Almanyayê serî li mafê penabertiyê dane, rayedarên dewletê kirin nava tevgerê. Li gor statîstîkên fermî, hejmara kesên ku tenê di Tîrmeha îsal de serî li mafê penaberiyê dayî, li gor par, sedî 112 bilind bûye. Herî gellek serîlêdan ji Federasyona Rûsyayê çêdibin û di rêza duyemîn de jî penaberên ji Sûriyê û Rojavayê Kurdistanê ne.

Di Tîrmeha par de bi giştî 4498 serîlêdanên mafê penabertiyê li Almanyayê hatibûn kirin. Ev hejmar di Tîrmeha îsal de duqet bûye bi giştî di Tîrmeha îsal de 9516 serîlêdan hatin kirin.

Di sala 2012ê de bi giştî 64.539 serîlêdanên penaberiyê li Almanyayê hatibûn kirin, lê heta meha Tîrmeha îsal 52.754 serîlêdan çêbûne. Wezîrê Karê Hundir yê Almanyayê Hans-Peter Friedrich derbarê bilindbûna hejmara serîlêdanên penabertiyê de got: "Ev hejmarên alarmdayinê ne." Friedrich herwiha diyar kir ku ew heta serê salê li bendê ne ku hejmara serîlêdanên mafê penabertiyê bigihije 100 hezarî.

### Istixbarata almanî di tirsa Çeçenên tundrew de ye

Ji sala 1992yê ve hejmara serîlêdanên li Almanyayê salana kêmtir dibû. Ji ber vê yekê jî gellek wargehên penaberan yên li Almanyayê hatibûn girtin. Lê ji sala 2007ê ve salane hejmara penaberan dîsa bilindtir dibe. Li gor daneyan, 12 hezar serîlêdanên îsal ji Federasyona Rûsyayê ne, ji van jî sedî 90 Çeçen in. Ji ber hejmara bilind ya kesên ji Çeçenistanê rêxistinên sîxurî yên Almanyayê jî ketine alarmê. Li gor rojnameya Die Welt, ya ku xwe dispêrê çavkaniyên istixbaratî, niha derdora 200 alîgirên rêxistina Emîrata Kafkasyayê, ya ku di lîsteya terorê de hatiye bicihkirin, li Almanyayê dijîn.

### Şebeke mirovan teşwîqî koçberiyê dikin

Wezîrê Karê Hundir yê eyaleta Bayernê, Joachim Herrmann, got ku divê ew derbarê serîlêderên penabertiyê yên ji Çeçenistanê hişyar bin, ji ber ku gellek îslamîst di bin perdeya mafê penabertiyê de tên Almanyayê.

Ji hêla din ve hat diyarkirin ku bi taybetî şebeke gotegotên ku Almanya wê 40 hezar penaberên ji Çeçenistanê werbigire û wê heryekî 4 hezar Euro bide wan belav dikin. Ev gotegot jî mirovan teşwîkî firotina malên xwe dikin û bi vî awayî bi rêya şebekeyan tên Almanyayê.

### Sûrî di rêza duyemîn de ye

Di rêza duyemîn ya kesên ku niha li Almanyayê serî li penabertiyê didin, kesên ji Sûriyê ne. Ji dema şerê li Sûriyê destpêkiriye heta niha bi hezaran kesan li Almanyayê serî li panaberiyê dane. Ji hêla din ve Almanyayê di meha Adarê de diyar kiribû ku ewê 5 hezar penaberên ji Sûriyê werbigire. Heta niha tenê hejmareke biçûk di çarçoveya vê projeyê de hatine Almanyayê. Pirraniya kesên din bi rêbazên qaçax û bi rêya şebekeyan tên Almanyayê.

# Filistîniyekî destê xwe dirêjî dilê Facebookê kir




**Köln (Rûdaw) -** Hackerekî filistînî vê carê ne hesabê Facebookê yê endamekî wê yê ji rêzê, lê yê damezrênerê wê Mark Zuckerberg bidest xist.

Malpera medyaya civakî Facebook li seranserê cihanê bûye parçeyek ji jiyana zêdeyî milyarek mirovan. Gellek caran hesabên kesan yên Facebookê dikevin destên.

Hackerê filistînê yê bi navê Khalil Schreateh jî gellek caran koma ewlehiyê ya Facebookê derbarê cihekî vekirî yê di sistema malperê de hişyar kir. Lê belê koma ewlehiyê guh neda wî. Dûre jî wî rûpela hevaleke Mark Zuckenberg a bi navê Sarah Goodin hack kir. Koma ewlehiya Facebookê li ser vê yekê ji Khalil Schreateh re nameyek nivîsand û diyar kir ku kêmasiyên ewlehiyê di pergala malpera wan de nîn in.

Khalil Schreateh ji bo ku îdiaya xwe piştrast bike dest danî ser hesabê xwediyê Facebookê Mark Zuckerberg û di rûpela wî de ev peyam nivîsand: "Li min biborin ku min dest avêt parçeyekî jiyana we ya taybet. Lê belê piştî min gellek caran birêveberiya Facebookê di vî warî de hişyar kir, ji bilî vê rêbazê ti şansê min nema." Li ser vê yekê birêveberiya Facebookê kete nava hewildana girtina kêmasiya di ewlehiya malpera de.

Ji hêla din ve di rewşên asayî de Facebook 500 Dolaran dide kesên ku ji bo pêşvebirina ewlekariya malpera wan dibin arîkar. Lê vê carê birêveberiya malperê diyar kir ku ji ber Khalil Schreateh bi "metoda zextê" destwerdan kiriye, ewê ji binî pereyan wekî diyarî nedin.


**Rûdaw**

**Rojnameyeke siyasî û heftane**

**Xwedî**
Rudaw Media GmbH

**Sernûser**
Ako Mihemed
ako@rudaw.net

**Rêvebirê Nivîsînê**
Nasredîn Akyol
nesredin@rudaw.net

**Dîzayner**
Hamdullah Yumlu

**Rêveberî û belavkirin**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Şêwirmendê yasayî û aborî**
Ayhan Çiftçî

**Marketing û reklam**
Sabir Yasîn
sabir.yasin@rudaw.net

**Navnîşan**
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

**Pêwendî**
Telefon: +49 (0) 221-58 87 22 80
Fax: +49 (0) 221-58 87 22 82
info@rudaw.eu
www.rudaw.net / www.rudaw.eu

**Belavkirin / Vertrieb:**
Axel Springer Vertriebsservice GmbH
Süderstraße 77
20097 Hamburg
www.as-vertriebsservice.de

Rûdaw ji bo nivîsên ku bi nav tên weşandin ne berpirsyar e.



Cîgirê serokwezîrê Sûriyê, Qedrî Cemîl:

# Peymaneke nefermî ligel YPGê heye

- Geştên di navbera Qamişlo û Şamê bi awayekî asayî pêk tên.
- Divê her welatiyekî Sûriyê razî be li ser şêweya çareserkirina pirsa kurd.

Cîgirê serokwezîrê Sûriyê ji bo karûbarên aborî, Qedrî Cemîl, ku bi esil Kurd e û xelkê gundê Telik e li herêma Cizîrê li Rojavayê Kurdistanê, ku yek e ji wan gundên ku di salên şêstan de, di çarçoveya dirustkirina Kembera Erebî de, hate erebkirin, ji Rûdawê re diyar kir ku Kurdan helwesteke pirr niştimanî nîşan dane, lewra grûpên tundrew heyfê ji wan dihilînin. Lê ligel çendîn caran pirskirinê jî, wî xwe ji wê yekê parast ku bersiva wê yekê bide, ka ew hebûna beşekî Kurdistanê di nav sînorên dewleta Sûriyê de qebûl dike an na.

**Rûdaw: Tu bi esil Kurd î, ji ber çi em vê hevpeyvînê bi kurdî nekin?**

**Qedrî Cemîl**: Roj baş. Careke din, cara bê kurdiya xwe baş dikim.

**Heta çi astê tu bi zimanê kurdî dizane?**

Heta asteke zêde ji kurdî fêm dikim. Îşelle di paşerojê de emê bi kurdî bipeyvin.

**Di hundirê van hersê rojan de 20 hezar Kurdên Rojavayê Kurdistanê koçberî Başûrê Kurdistanê bûn. Hûn nikarin rê li ber koçberiyê bigirin, da ku xelk dev ji cihê xwe bernedin?**

Ez niha wek sekreterê Partiya Îradeya Niştimanî ya opozisyonê ligel we dipeyvim. Partiya Îradeya Niştimanî, ku partiyeke opozisyonê ye, beşdarî hikûmetê ye, wek pêngava yekem ji bo dirustkirina hikûmeteke yekîtiya niştimanî.

Gelê kurd li navçeyên kurdî helwesteke siyasî ya pirr bilind nîşan da, bi dirêjiya hemû tengasiya Sûriyê di du salên borî de. Eger cudahî di baweriyan de li navçeyên kurdî hebe, her di çarçoveyeke aştiyane de maye, lê li navçeyên din ne wiha bû. Kurdên Sûriyê teqez kirin ku ew beşek ji pêkhateyên resen ên gelê Sûriyê ne û nîşan dan ku xwediyên helwesteke pêgihiştî û şaristanî ne. Lê ev helwest ne bi dilê wan hêzan bû ku desttêwerdana derveyî dixwazin. Lewra jî grûpên tundrew û tekfîrî dixwazin heyfa wê helwestê ji Kurdên Sûriyê hilînin, ji ber helwesta wan a niştimanî ku helwesteke niştimanî ya pirr mezin bû. Ewên ku komkujiyan li dijî Kurdên Sûriyê dikin, ew çekdar in ku ji derve hatine û pereyan ji derve werdigirin. Lê Kurdên Sûriyê, wek birayên xwe, karîbûn rê li ber wan bigirin.

**Wek we ragihand, dostên we arîkariya we dikin û mehane bi buhayê 500 milyon Dolar petrolê didin we. Gelo Iraq jî arîkariya we dike?**

Ew gotina min ji rojnameya Financial Times hatibû wergirtin, lê ne rast bû. Tiştê min wê demê got ew bû ku pêwistiya Sûriyê bi berhemên petrolê heye, bi buhayê 500 milyon Dolaran di her mehekê de, ji ber rawestiyana berhemanîna petrolê û şandina wê ji bo derveyî Sûriyê. Me got dostên me li cihanê hene, nemaze Rûs, Çîn û Îranî hewl didin ku destê hevkariyê dirêjî gelê Sûriyê bikin. Ji ber ku cezayên aborî yên ewropî û amerîkî ziyanê nagihînin rejîmê, lê ziyanê digihînin gelê Sûriyê yê hejar. Heta niha li gor zanyariyên min ti behseke arîkarî û hevkariyê nine. Sûriyê bi wan xêr û bêrên ku lê hene pêdiviyên xwe dikirre, ku kirrîna wan pêdiviyan li rojava lê hatine qedexekirin, yanî tiştek bi belaşî bo Sûriyê nayê dayîn.

**Yanî Iraq qet hevkariya we nake di aliyê petrol û çekan de?**

Bêguman Iraq çekan nade me. Lê eger Iraq hinek madeyan bide me, ew bêguman xwarin e û em ji Iraqa bira dikirrin.

**Iraq petrolê jî nade we?**

Na, heta niha ti petrolê nade me. Lê em hêvîdar in pêwendiyên me ligel Iraqê ewqasî bi pêş bikevin ku hinek pêdiviyên me ji petrolê peyda bike û bi nirxê navneteweyî bide me.

**Cebhet el-Nusre û Dewleta Iraq û Şamê li navçeyên cuda êrişên berfireh pêktînin, lê Artêşa Sûriyê zêde şerê wan nake, sedem çi ye?**

Tundrewên tekfîrî êrişan dibin ser hemû gelê Sûriyê. Di vê dema dawî de jî êrişên xwe li dijî gelê Sûriyê zêdetir kirin, li dijî Kurdan jî. Ew heyfê ji Kurdan hiltînin, da ku dev ji helwesta xwe ya hişmend û siyasî ya pêgihiştî berdin, ku di nava bûyerên borî de nîşan dan. Eger na, çi şîroveyeke din heye ji wan komkujiyan re ku li dijî Kurdan li hinek navçeyan tên kirin. Lê şer ji ber zêdebûna desttêwerdana derveyî di karûbarên Sûriyê de, pirr mezin e. Kar dikeve ser milê her kesekî ji gelê Sûriyê, ji desthilat û opozisyonê jî, ku li ser, bi kêmanî, bernameyekê li hev bikin ji bo kêmkirina wê desttêwerdana derveyî.

**Kî navçeyên Qamişlo, Hesek û Efrînê birêvedibe?**

Ev navçe helbet ne di dest Cebhet el-Nusra de ne.

**Naxwe di dest kê de ne?**

Ew hêzên wan hene li ser zeviyê û bervedêriya xwe dikin. Ew hêz li dijî destxistina ji derve ne. Van hêzan kontrola navçeyên xwe kirine û zeviya xwe kontrol kirine.

**Kî van navçeyan birêvedibe. Hikûmeta Sûriyê yan hêzên din?**

Ev navçe di destê xelkên xwe de ne, ku îdareyeke xwebixweyî pêk anîne û van navçeyan diparêzin. Ev jî rê li wê yekê nagire ku hinek leşkerên artêşa Sûriyê li navçeyên nêzîkî Qamişlo û Hesekê ne. Xelkên navçeyê bi xwe navçeyê diparêzin.

**Ango hêzên artêşa Sûriyê jî li van navçeyan hene?**

Erê. Xelkên van navçeyan van deveran diparêzin.

**Êdî kî zeviyên pertola Rimêlan û Tirbespiyê birêvedibe û diparêze?**

Bêyî berçavgirtina wê yekê ku kontrola kê li ser heye, niha hilberîna petrolê li zeviyên Rimêlan rawestiyaye. Kontrolkirina zeviyan jî, ji aliyê cografîk ve, di navbera çend hêzên cuda de dabeş bûye. Lê bi awayekî giştî berhemanîna wan sifir e.

**Lê li gor raportan, YPG ya ser bi PYDê van navçeyan diparêzin?**

Di nêrîna min de rewşa li ser zeviyê awayê hevahengiyekê disepîne, di navbera van hêzên ku xelkên sivîl diparêzin û yekîneyên artêşa Sûriyê de. Ev de-fakto ye, bi xwe li ser herdu aliyan tê sepandin. Di nêrîna min de hevahengî karekî reyalîtî ye û heye.

**Li gor raporta televizyona rûsî Elyewem firokexaneya leşkerî ya Qamişloyê bi hevbeşî ji aliyê artêşa Sûriyê û YPGê ve tê parastin. Ev çawa ye?**

Erê, rast e. Geştên di navbera Qamişlo û Şamê bi awayekî asayî pêk tên.

**Çima we doz li YPG kir ku navçeyên Kurdan biparêzin û we bi xwe ne parastin?**

Min hay ji vê yekê nîne ku ew doz li wan bûbe. Lê zanyariya min heye ku YPG li wê deverê ne û ew rolê digirin. Dibe peyameke nefermî jî hebe, ku ev reyalîte sepandî ye.

**We hay ji vê rolgirtinê heye?**

Ku dibêjin peymaneke veşartî heye? Wate ti peyman nîne. Lê belê ev peyman reyalîteyê sepandiye. Peymaneke bêyî axaftin. Eger peyman jî hebin, ew nehatine ragihandin û ez ne agahdarê wan im.

**Çima ev peyman ligel ENKSê yan aliyên din pêk nehat?**

Nizanim. Haya min jê nîne. Lê pêwendiyên hikûmeta Sûriyê ligel partiyên kurdî bi awayekî giştî baş in. Ew jî beşekî bingehîn û sereke ne ji opozisyona Sûriyê û beşdarî kongreya Cenevreyê dibin.

**Ti niyaza serokê Sûriyê heye ku kêşeya kurdî li Sûriyê çareser bike?**

Welatiyên Sûriyê, di çarçoveya niştimanî de, ligel hev rûdinin. Bi xwe biryarê li ser çarenivîsa xwe didin. Li ser bingeha lihevkirinekê, ku yekîtiya axa Sûriyê garantî bike. Herwiha yekîtiya niştimanî ya Sûriyê biparêze. Ew dem bidawî hat ku aliyekî tenê nêrîna xwe li ser tevan disepand. Îro ev rewş wiha dixwaze ku hemû ew hêzên nûneriya pêkhateyên gelê Sûriyê dikin, li hev bikin.

**Niha opozisyona Sûriyê ji Kurdan re ti mafek rewa nedîtiye. Eger serokê Sûriyê yan hikûmeta Sûriyê bixwaze kêşeya kurd çareser bike, çi mafî dide Kurdan, çi projeya we ji bo Kurdan heye?**

Yekem tişt, ne tenê yek opozisyona Sûriyê heye. Opozisyonek heye ku ti gav neavêtiye. Tew her guh jî nade Kurdan û wek nedîtî dike. Opozisyoneke niştimanî wek me jî heye, ku doza hemû mafên rewa yên Kurdan li Sûriyê dikin.

**Ev opozisyona ku hûn bi niştimanî binavdikin, wek nimûne çi mafî ji bo Kurdan rewa dibîne?**

Di rewşa Sûriyê de Kurd beşek in ji maseya danûstandinê. Bi lihevkirin ligel hemû Sûriyan dibe çareserî bê dîtin. Herwiha nêrîna Kurdan nêrîneke ku hingê guhdariya wê tê kirin. Ji ber ku wan di krîza Sûriyê de roleke erênî û mezin leyîstin. Divê hemû kêmasiyên ku berê bi awayê mamelekirinê ligel Kurdan hebûn, nemînin. Divê em jê derbas bibin.

**Beramber dîmenên koçberbûna bi kom ya Kurdên Rojavayê Kurdistanê hûn hest bi çi dikin?**

Çareserî tenê çareseriya siyasî ye. Çareserî çûna bo Cenevreyê ye. Çareserî ew e ku hemû gelên Sûriyê ji bo çareserkirina krîza Sûriyê bi awayekî dirust ligel hev tevbigerin. Ji ber rewşa asayişî rewşa aborî aloz e. Pêwîstiya çareseriya rewşa asayişî jî bi çareseriya siyasî di nav Sûriyan de û rêgirtina li ber hemû awayên destxistina ji derve heye.

**Hinek partiyên Rojavayê Kurdistanê doza îdareya xwebixweyî dikin. Hinek ji wan doza federaliyê dikin. Eger sibe Kurd doza federaliyê bikin, helwesta hikûmeta Sûriyê wê çi be?**

**Yekem:** Pêwîst e Kurdên Sûriyê nêrînên xwe dabirêjin û diyar bikin. Nabe yek aliyê kurdî bi tenê biryarê li ser çarenivîsa Kurdên Sûriyê bide. **Duyem:** Divê ev pirs bi awayekî demokratîk ligel hemû Sûriyan çareser bibe. Ew jî hingê dibe pêk bê, piştî ku dest bi proseya siyasî tê kirin, ku digihije encama danûstandineke niştimanî giştgîr. Wate; serencam divê Kurd li ser zeviyê derbîra nêrîna xwe bikin. Divê referandûma Kurdan bi xwe li ser vê pirsê bê kirin.

**Pêwendiyên di navbera hikûmeta Sûriyê û hikûmeta Herêma Kurdistanê de çawa ne. Gelo ti pêwendiyên we hene?**

Divê pêwendî di navbera Sûriyê û hemû pêkhateyên Iraqê de baş bibin, ji wan jî Herêma Kurdistanê, ji bo çareserkirina van pirsên aloz ên ku îro Sûrî tê de derbas dibe. Em hêvîdar in ku di siberojeke nêzîk de kêşeya kurd li Sûriyê çareser bibe.

*Hevpeyvîn: **Dilbixwîn Dara / Dilxwaz Behlewî***

# Yê zerermend gelê ROJAVA ye


Wêne: Rûdaw

Bi hezaran Rojavayî li benda derbasbûna aliyê din yên sînor in / sînorê navbera Rojava û Başûrê Kurdistanê

**Sêmalka (Rûdaw) -** Piştî vekirina deriyê sînor yê Sêmalka ji bo xelkê Rojavayê Kurdistanê, bi hezaran kes di vî derî re derbasî Başûrê Kurdistanê bûn. Ev penaber ji aliyê hikûmeta Başûrê Kurdistanê ve ji bo kampên li Dihok, Hewlêr û Silêmaniyê hatin şandin.

Li gor berpirsên deriyê sînor yê Sêmalka yê di navbera Başûr û Rojavayê Kurdistanê de, piştî ku heftiya borî derî ji bo penaberên ji Rojavayê Kurdistanê hat vekirin, di navbera tenê çend rojan de bi hezaran kes derbasî Başûr bûn. Vê hejmara mezin ya penaberan û wêneyên xelebalix yên koçberan li ser pira di navbera herdu beşên Kurdistanê de, hem di nav Kurdan de û hem jî di qana navnetewî de deng veda û reaksyonên cuda li dû xwe anîn. Di serî de serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî, gellek aliyên Başûrê Kurdistanê diyar kirin ku herçiqasî Kurdên Rojava li Başûr jî li welatê xwe ne, lê nabe Kurd bi komî Rojava terk bikin û Rojavayê Kurdistanê ji Kurdan vala bibe. Van berpirsên Kurd diyar kirin ku divê Kurd li ser xaka xwe bimînîn û divê li ser xaka wan arîkariya wan bê kirin.

Li aliyê din berpirsên PKK/PYDê jî, ku beriya vekirina deriyê sînor hertim desthilata Başûrê Kurdistanê rexne dikin ku derî li ber penaberan hatiye girtin û gel bi birçîbûnê re rûbirû hiştiye, piştî ku deriyê sînor hat vekirin û bi hezaran Kurd berê xwe dan sînor û di wî derî re derbasî Başûr bûn, ji nişka ve helwesta xwe guhertin û ew jî ketin alarmê. Lê dîsa wan berpirsên PKK/PYDê desthilata Başûr tometbar kirin, vê carê ji ber ku derî vekir û li gor wan berpirsan rê li ber koçberiyê vekiriye. Gellek dezgehên ragihandinê yên nêzîkî PKKê desthilata Başûr bi wê yekê tewanbar kirin ku ew di nava planeke ji bo valakirina Rojava de cihê xwe digirin. Di vê bareyê de rêveberê deriyê Sêmalka yê ji aliyê Rojavayê Kurdistanê ve, ku girêdayî PYDê ye, ragihand: "Derbasbûna hemû xelkê Sûriye bo Başûrê Kurdistanê tawan e, pêwîste rê ji vî xelkî re were girtin." Rêveberê dergehê sînor ragihand ku eger ev pir ji bo vê armancê hatibe vekirin, pêwîste nemîne.

Dûr ji hevdu tawanbarkirina aliyên siyasî yên kurdî, di serî de PDK û PKK, zerermendê herî mezin yê vê rikberî û lihevnekirina partiyên kurdî derbarê Rojava de wê gelê Rojava bi xwe û doza kurdî bi li wî perçeyê Kurdistanê û heta seranserê Kurdiatanê be.




# Li Tirkiyeyê 18 Kurdistan hene

Kemal Avci Enqere

Li Tirkiyeyê ji dema damezrandina komarê heta pêşiya demeke kurt, gelê kurd di nav sêkuçiya înkar, têkbirin û asîmîlasyonê de jiyana xwe domand. Hebûna Kurdan hat înkarkirin, hemû daxwazên mafan bi tevkujiyan hatin bêdengkirin. Bi pêkanînên asîmîlasyonê dixwestin Kurdan bikin Tirk. Heta pêşiya demeke kurt jî bilêvkirina ku Kurd neteweyek e û herwiha bikaranîna têgeha Kurd bi serê xwe jî sedema girtinê bû.

Lê bi têkoşîna Kurdan ya ku bi bedeleke giran hatiye dayin, îro înkarkirina Kurdan bi dawî bûye. Herçiqas hê jî mafê perwerdeya bi zimanê zikmakî û xwebirêvebirana Kurdan tê xespkirin jî, êdî têgehên Kurd û Kurdistan ji ber guherînên zagonî yên di dema hikûmeta AKPê de êdî ji tabûyê rizgar bûn.

Li zanîngehan beşên kurdî vedibin û televizyoneke ku bi destê dewletê 24 seetan weşana kurdî dike heye. Qadeke din ya ku lê înkarkirina Kurdan bi dawî bûye, tomarkirina navên li ser nasnameyê ye. Digel navên bi kurdî, têgehên erdnîgarî yên mîna Kurdistan, Amed û Dêrsim û herwiha qedexeya li ser navdanîna navên mîna Ocalan, Barzanî, Talabanî, Seyid Riza û Şêx Seîd jî rabûn.

### Navê serokên Kurdan li zarokan tê danîn

Li gor lêgerîna Rûdawê di malpera Saziya Statîstîkê ya Tirkiyeyê (tuik.gov.tr) de, li seranserî Tirkiyeyê 68 kes paşnavê rêberê PKKê Abdullah Ocalan yê di girtîgeha Îmraliyê de, bikartînin. Du ji van kesan jî ji welatê Ocalan, bajarê Rihayê ne.

Herwiha 44 kes jî paşnavê serokê Herêma Kurdistanê Mesûd Barzanî wekî nav bikartînin. Hejmara kesên ku paşnavê serokdewletê Iraqê Celal Talabanî wekî nav li wan hatiye danîn jî 11 in. Li Tirkiyeyê kesekî bi navê "Celal Talabani" jî tomarkirî heye.

Navdayînên parlementera serbixwe ya Amedê Leyla Zana û serokê girtî yê HAK-PARê Kemal Burkay jî balê dikişînin ser xwe. 53 kes navê "Leyla Zana" ji xwe re bikartînin. Du kes ji van jî li bajarê wê Amedê dijîn. Bi giştî 14 kes jî bi navê Kemal Burkay hatine tomarkirin.

### Şêx Seîd û Seyîd Riza bi nifşê nû tên jiyandin

Navê rêberê serhildana Dêrsimê, Seyîd Riza û herwiha navê Şêx Seîd, ku hê jî cihên gorên wan ne diyar in, bi navdayina nifşên nû dijîn. Navê rêberê serhildana Dêrsimê wekî "Seyit Rıza" li 163 kesan, "Seyyit Rıza" li 10 kesan, "Seyyid Rıza" li 12 kesan û "Seyid Rıza" li 23ê kesan hatiye danîn. Bi vî awayî navê rêberê serhildana Dêrsimê li seranserî Tirkiye û Bakurê Kurdistanê li 208 kesan hatiye danîn. Di nasmeyên 5 kesan de jî navê "Şeyh Sait" û yê yekî jî wekî "Şeyh Said" hatiye tomarkirin.

Xaleke din ya balkêş jî ecibandin û navdayînên malbatan yên navên cihên cografîk e. Navê Kurdistanê ku heta beriya demeke kurt qedexe bû, niha bi giştî bi awayekî fermî li 18 kesan hatiye dayin. Navê 14 ji van wekî "Kürdistan" û yê 4 jî wekî "Kurdistan" hatiye tomarkirin.

### Herî gellek navê Amedê tê ecibandin

Herwiha navê "Amed" jî li 1393ê kesan hatiye danîn û ji wan 530 kes li Amedê bi xwe jî dijîn. Navê Dêrsim jî wekî navê fermî yê 531 kesan di nasnameyan de hatiye tomarkirin û ji van 22 jê li bajarê Dêrsimê dijîn. Ji bilî wê, navê Mêrdîn li 284 kesan, yê Riha li 3 kesan û yê Çewlik jî li kesekî hatiye kirin.

Herwiha balkêş e ku navê Rojavayê Kurdistanê, ku niha bi tevkujî û berxwedanê di rojevê de ye jî, li gellek kesan bi awayekî fermî hatiye kirin. Li seranserî Tirkiyeyê 10 kes bi navê "Rojava" hatine tomarkirin.



## Fermandarekî kurd yê ser bi Artêşa Azad a Sûriyê:

# Grûbên cîhadî dest danîne ser Artêşa Azad

Mutlu Çiviroglu

Fermandarekî Bereya Kurdan, ku yek ji hêzên nav Artêşa Azad a Sûriyê ye, dibêje ku nêzîkî 7 hezar çekdarên wan di nava Artêşa Azad de hene.

Fermandarê yekîneyeke kurd ya ser bi Artêşa Azad a Sûriyê, Hacî Ehmed Kurdî, ji Rûdawê re got ku Kurdên Sûriyê li gellek bajar, bajarok û gundên Ereban dijîn û wan xwestiye ku hêzeke wan a hevbeş ligel neteweyên van navçeyan hebe. Bi vê sedemê wan Bereya Kurdan damezrandiye. Ehmed Kurdî herwiha diyar kir ku armanca wan ew e ku ligel Artêşê Azad dawiyê li "dîktatorê Şamê" bînin.

Ehmed Kurdî got ku Artêşa Azad pile û payeyên leşkerî li ser bingeha neteweyî dabeş nake, herwiha betalyonan jî li ser bingeha neteweyî danamezrîne. Ehmed Kurdî: "Di nav vê hêzê de hemû ji bo ruxandina serokê niha yê Sûriyê Beşar Esed şer dikin. Lê Kurd dixwazin nasnameya xwe derxînin pêş, ji bo ku nîşan bidin ku ew jî di şoreşa Sûriyê de beşdar in."

Derbarê navê Bereya Kurdan de jî, Hacî Ehmed Kurdî got: "Ti hokara nijadî li pişt hilbijartina vî navî nebû. Tenê da ku em beşdariya xwe di şoreşê de nîşan bidin. Lewma me Bereya Kurdan damezrand. Hin bi hin piştgiriya me pirr dibe. Em xwe li hemû bajarên Sûriyê birêxistin dikin."

Heta niha hêzên opozisyona kurdî bi awayekî giştî xwe ji şerê navxweyî yê Sûriyê dûr kiriye. Lê hejmarek çekdarên kurd di nav yekîneyên Artêşa Azad a Sûriyê de şer dikin. Li gor gotina Ehmed Kurdî, 7 hezar çekdarên Bereya Kurdan hene. Yek ji wan Ebû Musab bû, ku serokê grûba Cebhet al-Nusre girt, ya ku ser bi al-Qaîde ye.

Ehmed Kurdî gazinan ji wê yekê dike ku grûbên tundrew ên wek Cebhet al-Nusre û hejmarek grûbên din ên cîhadî ji Rojhilata Navîn û welatên din bo Sûriyê tên şandin, da ku beşdarî şerê navxweyî bibin û ajendeyên al-Qaîde peyrew bikin. Ehmed dibêje ku ew grub bi awayekî kirdarî kontrola Artêşa Azad a Sûriyê dikin û wiha berdewam dike: "Di bin hejmarek nav de çalakiyan dikin. Lê dilsoz û arîkarên al-Qaîde ne. Ev grûbên tundrew dikarin rê li ber damezrandina hejmarek yekîneyên Artêşa Azad a Sûriyê bigirin û desthilata wan sînordar bikin. Destê wan li ser pirraniya dezgehanên ku ji bin destê rejîma Esed hatine rizgarkirin heye."

Di vê dama ku pevçûn di navbera YPGê û Îslamiyên tundrew de li navçeyên kurdî pêk tên, şerê Sûriyê ber bi aloziyeke bêhtir çûye. Ehmed Kurdî dibêje: "Grûbên îslamî di hewla kontrolkirina Artêşa Azad a Sûriyê de ne. Dixwazin navçeyên kurdî têxin bin destê xwe. Me jî ev red kir. Lewma êrişî me dikin."

Ehmed Kurdî wiha dibîne ku gefa kontrolkirin û desthilata aliyên grûbên îslamî roj bi roj ber bi zêdebûnê ve diçe û doz li civaka navdewletî û bi taybetî Neteweyên Yekbûyî û Tirkiyeyê kir ku guşarê têxin ser grûbên îslamî û arîkariya Artêşa Azad a Sûriyê bikin.



# Çapemeniya navnetewî li ser koça ji Rojava

**Neue Zürcher Zeitung**

### Koçberbûna bi kom

"Revîna bi ser hev ya ber bi Başûr ve: Bi hezeran Kurd derbasî bakurê Iraqê dibin. Başûrê Kurdistanê dibe stargeha Rojava. Di rojên dawiyê de ji 20 hezaran zedetir Kurdên ji Sûriyê reviyan Herêma Kurdistanê. Hikûmeta bakurê Iraqê û komeleyên arîkariyê ji bo berdestkirin û xemxwarina wan gazînc û hewar dikin." Rojnameyê herwiha cih daye daxuyaniya nûnerê Komîseriya Bilind a Penaberan (UNHCR) ya NY, Adrian Edwards, ku wiha dibêje: "Heta niha koçberbûneke wiha bi girseyî ji Sûriyê nebibû. Kurd ji ber tengasî û neheqiyê direvin"

**The New York Times**

### Eriş enerjiya xwe ji Iraqê werdigirin

"Erişên al-Qaîde li Sûriyê enerjiya xwe ji Iraqê werdigirin. Grûbên terorîst yên li Sûriyê şer dikin, carnan derbasî Iraqê jî dibin û li wir jî teqînan pêktînin. Wezîrên derve yên Amerîka û Iraqê li ser çareyekê disekinin ku rêya grûbên terorîst qut bikin. Di heremên Kurdan de pevçûna di navbera Kurd û grubên radîkal de û bombebarankirina gund û bajarokên Kurdan ji aliyê arteşa rejîmê ve dibe sebeba koçberbûna bi hezaran Kurd ya bo bakurê Iraqê, an jî welatên cîran."

**the guardian**

### Bi hezaran Kurd direvin herema otonom ya bakûrê Iraqê

"Li ser Kurdên Rojava hem ji aliyê arteşa rejîma sûrî û hem jî ji aliyê grûbên terorîst yên girêdayî al-Qaide ve eriş û metirsiyeke pirr mezin heye û ji bo valakirina Kurdistanê metirsî berdewam e. Kal, pîr, keç, zarok û jin bi hezeran di ser çemê Xabûr re derbasî aliyê xwişk û birayên xwe dibin. Heta niha nezikî 7 hezar penaber di kampan de bi cih bûne, 4 hezar penaber jî ji bo bajarê Silêmaniyê hatin şandin. Heta niha hikûmeta Herema Kurdistanê ji ber kemhatina penaberan kêfxweş bû. Le di rojên dawiyê de rewş ji nişka ve guherî û bi hezaran penaber li ber deriyê Hewlêrê disekinin. Serokê Herema Kurdistanê Mesûd Barzanî jî rojên derbasbûyî ji bo parastina Kurdên Rojava ji ber grubên Cîhadîstan û midaxaleya rewşê ramanên xwe anîbûn ziman."

**The Washington Post**

### Kurdên sûrî di bin metirsiyê de ne

"Bi hezeran Kurd derbasî Herema Kurdistana Iraqê dibin. Ji ber şer direvin. Li gorî daxuyaniya nûnerê komeleya arîkariya zarokan ya îngilizî "Save the Children" Alan Paul, heta niha nezikî 1 milyon û 900 hezar welatiyên sûrî ji ber şer û pevçûnên li Sûriyê reviyane derve û di nav wan de jî bi hezaran Kurd hene. Kurdên ku derbasî Herêma Kurdistanê dibin, pirranên wan zarok û keç in. Ji ber pevçûnên di navbena şervanên kurd û grûbên giredayî al-Qaîda de, koç dikin. Heta niha jî ne diyar e ku çend jin, mêr û zarok ji aliyê grûbên al-Qaîda ve hatine kuştin. Kurdên sûrî di bin metirsiyê de ne. Heta niha nezikî 190 hezar Kurdên penaber derbasî Herêma Kurdistanê bûne."

*Amadekirin: Reşad Ozkan*



# 9 sal in mêşên hingivîn xwedî dike

Wêne: Rûdaw

**Zekî Ozmen** *Bottrop*

Şahin Aydin yê ji bajarê Meletiyê yê Bakurê Kurdistanê ev neh sal in ku li Almanyayê mêşên hingivîn xwedî dike. Aydin ji sala 1974ê ve li Almanyayê dijî. Ew herwiha hunermendê wêneyan e û ji Partiya Çep jî endamê meclisa bajarê Bottropê ye.

Derbarê meraqa wî ya xwedîkirina mêşên hingivîn de, ew dide zanîn ku bapîrê wî mêşên hingivên xwedî dikirin û bi wê hewesê wî jî ji beriya 9 salan destpêkiriye.

Niha 14 qotiyên wî yên şanên hingivîn hene. Herwiha 3 şagirt jî ji bo xwedîkirina mêşên hingivîn li cem wî perwerde dibin. Meraqa dîtina mêşên wî ne tenê li cem nas û dostên wî çêbûye, herwiha hersal polên dibistanan û yên baxçeyên zarokan jî serdana wî dikin. Bi vê yekê hem zarok fêr dikin ka hingivîn çawa çêdibe û hem jî Aydin hewl dide tirsa wan ya ji mêşên hingivîn rake.

## Bêyî mêşa mak sîstem têkdiçe

Dema em ji pisporê mêşên hingivîn Şahîn Aydin pirs dikin, ka ji bo kesekî ku qet ji xwedîkirina mêşên hingivîn fêm neke, divê çi bizane, ew vê agahdariya balkêş dide: "Ji bo çêbûna hingivîn ya herî giring mêşa hingivîn a mak e. Ku ew nebe, hemû mêşên din wê bimirin. Di warê komkirina hingivîn û belavkirina hêkan de, ew hemû sîstemê li ser lingan dihêle. Ew birêvebera 30-40 hezar mêşan e. Makek 4 salan dijî û di jiyana xwe de çend milyonek hêkan dirijîne. Jixwe ku mêşa hingivîn ya mak nebe, mêşên din bi kêrî tiştekî nayên û hingivîn nadin hev. Cudahiya makê ji hemû mêşên din ew e ku yên din hemû karker in û ji 4 heta 8 mehan dijîn. Dema ya mêşa mak dibe yeksalî, em li ser pişta wê hejmarekê datînin. Bi wî awayî diyar dibe ka ew çend salî ye. Dema dibe 3 salî, ez wê dertînim û dikujim. Piştre jî mêşemakek hingivîn ya ciwan dikim nav wan de. Ku mak ciwan be, baştir dixebite û bêhtir hingivîn dide berhevkirin."

## Bêyî lepik û maske dikeve nav mêşan

Ew di dema kontrolkirina rewşa şanên hingivîn de beyî lepik û maske dikeve nav mêşên hingivîn. Lê ew dibêje ku divê mirov di serdana mêşên hingivîn de maske û lepikan werbigire. Mêşên hingivîn dizanin ku mirov dixwaze hingivîn derîne û ji wê yekê êriş dikin. Ew herwiha diyar dike ku dema hewa nexweş be û dîsa dema mirov bi tirs be, mêş êrişker dibin. Nerehetiya mirovan wan ditirsîne û ji wê yekê agresîv dibin.

Aydin destnîşan dike ku bi taybetî dema Kurdên li welêt pê dihisin ku ew li Almanyayê mêşên hingivîn xwedî dike: "Par du parlementerên ji Başûrê Kurdistanê bûn mêvanên min. Min jî heryekî şûşeyek hingivîn wek diyarî da wan. Dema min ji wan re got ku hingivînê min e, matmayî man."

## "Hingivînê Kurdistanê ji yê Almanyayê xweştir e"

Derbarê cudahiya tehma di navbera hingivînê Kurdistanê û yê li Almanyayê çêdibe jî, Şahîn Aydin dibêje ku li Kurdistanê giyayên cure hene û ev dibe sedema ku tehma yê Kurdistanê xweştir be. Herwiha keşûhewaya Kurdistanê jî ji ya Almanyayê guhertî ye û ev jî bandorê dike.

Herî dawî jî Aydin derbarê evîna xwe ya ji bo mêşên hingivîn jî wiha diaxive: "Ez ji xwezayê hez dikim û fêdeyek mezin ya mêşên hingivîn li xwezayê heye. Wekî mînak, sedî 70 ji tovê şînayiyê û fêkî bi xêra mêşên hingivîn belav dibe. Ev tê wê wateyê ku eger mêşên hingivîn nebin, wê qutê mirovatiyê gellekî kêm bibe. Wê xela çêbibe. Pêşniyara min ew e ku yê derfetên wan hebin, bila mêşên hingivîn xwedî bikin. Ji ber ew heywaneke paqij e, hingivînê wê tê xwarin û bandora erênî li xwezaya me jî dike."

# Qetîtek sêv destên wî kirin kelemçeyê

**Köln (Rûdaw) –** Kurdekî ji Swîsreyê xwest rojeke xweş ligel kurê xwe yê sê salî derbas bike, lê roja wî bi destên di kelemçeyê de bi dawî bû.

Kurdê ku ev 10 sal in li Wiedikon a Zurichê dijî, ji bo ku kêfa zaroka xwe bîne, yekşema hefteya derbasbûyî çû qeraxê çemê Lîmmat li bajarê Swîsre Zurichê û di seet 17.35ê de bi kurê xwe re li keştiya bi navê Limmaboot a tûrê siwar bû. Pêşiya herkesî ew bavê kurd û kurê xwe li keştiyê siwar bûn. Piştre 22 rêwiyên din jî siwar bûn.

Li gor rojnameya NZZ, dema konrolkera keştiyê dît ku bavê kurd qetîtek ji sêveke ku li malê amade kiribû dide kurê xwe, beyî silavê bide, jê re gotiye ku xwarin qedexe ye. Bavê kurd jî li ser vê yekê dibêje ku ew xwarinê naxwin lê belê ji ber kurê wî birçî ye, ew sêvê didiyê. Bavê zaroka sê salî herwiha diyar dike ku wî piştre kurê xwe daniye ser kaboka xwe û êdî sêv nedayê. Lê piştre zarok diçe ser kursî û ji xwe re li derve dinêrê. Li ser vê yekê jî ya kontrolker dîsa tê cem wan û vê carê tiliya xwe lê dihejîne û dibêje: "Divê hûn biyanî biaqil bin".

Polîsan jî lê doz vekirin

Bi vê gotinê jî alozî destpêdike. Bavê kurd ji kontrolkerê re dibêje: "Ez li vir ne biyanî me, ez jî rêwiyekî ji rêzê me û destûrê jî nadim ku kesek tiliyan li min bihejîne û biaxive. Hûn miroveke derûntêkçûyî ne."

Li ser vê jî birêveberên keştiyê jê dixwazin ku ew û kurê xwe keştiyê biterikînin. Piştî ew dibêje ku bilêta wî heye û sedem nîne ku ew keştiyê biterikîne, birêveber bangî polîsan dikin. Du polîsên ku tên jê dixwazin ew ji keştiyê derkeve, lê Kurd jî hewil dide ku behsa mafên xwe bike lê belê polîs guhdariya wî nakin. Dûre jî destên wî dikin kelemçeyê û dema wî bi xwe re dibin kurê wî yê sê salî jî dike hewar û digirî. Piştre jî, dema ew parêzerekî dixwaze, wî serbest berdidin. Digel ku birêveberiya şirketa keştiyê dibêje ku karmendên wan beyî meylên nijadperestî tevgeriyane, bavê kurd ji tespîta xwe piştrast e.



Di hundirê keştiyên Limmaboot de xwarin qedexe ye

Kurdê ku bi awayekî neçaverêkirî geşta xwe bi dawî kir, paşê pê hesiya ku bi sedema “guhnedana polîsan“ ew jî bo îfadeyê hatiye daxwazkirin.

# Êzîdî kî ne ya Îlhan Kizilhan derket

**Köln (Rûdaw) -** Di karê xwe yê akademîk bi zarok û ciwanên êzîdî re, Prof. Dr. Jan Îlhan Kizilhan pêrgî gellek pirsên wan ciwanan derbarê dîn, dîrok, tore û edetên Êzdayetiyê de hat. Li ser bingeha danûstandin û nîqaşa bi wan zarok û ciwanan re, Îlhan Kizilhan bi zimanekî sivik û li gor têgihiştina zarok û ciwanan pirtûkeke bi navê "Êzîdî kî ne?" amade kiriye, ku hewl dide bersiva wan pirsên ku zarok û ciwanan eleqedar dikin bide. Pirtûka 190 rûpelî duzimanî ye (kurdî û almanî) û bi awayekî pirs û bersiv hatiye amadekirin û nivîskar hewl daye ku bi bersivandina 135 pirsên ji gellek mijarên cuda, ronahiyê bixe ser gellek pirsên zarok û ciwanên êzîdî, bi taybetî yên ku li diyasporayê û dûrî civak û jiyana kurdî û êzîdî mezin bûne. Herçiqasî jêrnivîsa pirtûkê "Zarok û ciwanên êzîdî pirsan li ser dîn, nasname û penaberiya xwe dikin" e jî, lê dêbav û kesên ku meraqa wan ji bo dînê Êzdayetiyê heye, wê bi zimanekî sivik bersiva gellek pirsên xwe di vê pirtûkê de bibînin.




Pirtûk beriya demeke kurt ji aliyê weşanxaneya almanî VWB – Verlag für Wissenschaft und Bildung ve hatiye derxistin û dikare bi rêya hemû pirtûkfiroşan were peydakirin.

# Mala Êzdiyan li dijî PYDê bertek nîşan da




Berpirsên Mala Êzdiyan ya Oldenburgê

**Köln (Rûdaw) -** Mala Êzdiyan ya bajarê Oldenburga Almanyayê bi daxuyaniyekê diyar kir ku PYDê xwestiye di şîna Elî Saado Biro û Murad Saado Biro de, yên ku li Rojavayê Kurdistanê ji aliyê çeteyên Dewleta Îslamî ya Iraq û Şamê û Cebhet el-Nusra ve hatin kuştin, provokasyonê derxîne û dûre jî li dijî komeleya wan daxuyanî belav kirine.

Di daxuyaniya Mala Êzdiyan ya Oldenburgê de tê gotin ku wan roja 18ê Tebaxê bi armanca parvekirina êşa malbatan şîn daniye, lê hinek alîgirên PYDê bi al, wêne û plakatan hatine taziyeyê û ji serokê komeleya wan re diyar kirine ku ew dixwazin li ser navê partiya xwe merasima bîranînê lidarbixin. Lê belê serok û birêveberên Mala Êzdiyan ji wan re diyar kirine ku ev bi salan e ku ew di çarçoveya destûra komeleya xwe de rê nadin ku partiyên siyasî di mala wan de propagandaya yekalî bikin û siyaseta xwe bimeşînin.

Mala Êzidiyan herwiha di daxuyaniya xwe de ev daxwaza alîgirên PYDê wekî provokasyon nîşan dide û dide zanîn ku ev helwest bûye sedema ku nerazîbûna hinek kesên hazir li dijî mala wan pêk were.

Mala Êzdiyan ya Oldenburgê herwiha destnîşan dike ku roja 18ê Tebaxê li komeleya Êzdiyan ya Emmerichê, ku girêdayî FKÊ yê, û FKÊ jî komeleyeke girêdayî PKKê ye, bîranîna 15ê Tebaxê û cangoriyên Êzdiyan tê lidarxistin û bi taybetî derbarê mala wan de ev daxuyanî jêrê li wir ji çapemeniyê re hatiye belavkirin:

"Dema ku hate bihîstin Mala Êzdiyan ya Oldenburg nehîştiye PYD û FKÊ bîranîna cangoriyên Êzdiyên Rojava pêkbînin, gel ev helwesta ne mirovane şermezar kir û helwesteke hişk nîşan da. Hate diyarkirin ku rayedarên PYDê û FKÊ helwesta malê protesto kirine û mal terikandine."

Mala Êzdiyan ya Oldenburgê di daxuyaniya xwe ya di vê bareyê de diyar dike ku ji ber van daxuyaniyan û "da ku raya giştî nekeve şaşiyan, em rêveberiya Mala Êzdiyan mecbûr in vê daxuyaniyê bidin" û dide zanîn ku mala wan îdareyeke olî, civakî û rewşenbîrî ye. Ew qedir didine hemû hêz û partiyên Kurdistanê û ew jî dixwazin ku partî qedir bidin wan. Di dawiyê de tê gotin ku hinek partî ji ber ku ew nakevin bin sîbera wan de, dijîtiya wan dikin û hêvî dikin ku ew dev ji wê dijîtiya xwe berdin û qebûl bikin ku ew nakevin bi sîbera ti kesî, ji ber ku "ev mal ji bo kar û xebata xwe ya bêalî û hêja li tevaya Kurdistan, Ewropa û wisa jî cihanê hatiye naskirin û eyan bûye wek navendeke Kurdnasiyê, Êzdînasiyê.

# Platforman piştgiriya Rojava hat damezrandin



**Berlin (Rûdaw) -** Li Berlînê li ser banga Yekîtiya Komelên Kurd li Almanyayê (YEK-KOM) bi beşdariya gellek saziyên kurd Platforma Kurdên Almanyayê ji bo Kurdên Rojava hat damezrandin.

Roja şemiya heftiya borî li avahiya Navenda Çanda Mezopotamya ya Berlînê bi tevlibûna gellek kesayetî, nûnerên partiyên siyasî, saziyên Kurdan yên li Almanyayê, bi armanca bihevrekarkirina ji bo piştgiriya Rojavayê Kurdistanê, civînek hat lidarxistin. Di civînê de gûftûgoyên derbarê şêweyê bihevrekarkirina ji bo Rojava hatin kirin. Di encama civînê de "Platforma Kurdên Almanyayê ji bo Kurdên Rojava" hat damezrandin.

Li gor encamnameya civînê, wê ev platform bi gellek şêweyan hewl bide ku piştevaniyê ji bo Rojavayê Kurdistanê peyda bike. Digel rêkirina nameyên agahdarîkirinê derbarê Rojavayê Kurdistanê de ji bo serokwezîra Almanyayê Angela Merkel, Neteweyên Yekbûyî û serokên çend welatên din, wê heman platform di 7ê Îlonê de meşekê jî lidarbixe. Herwiha armanceke din ya plaformê wê karê agahdarkirina raya giştî û medyayê derbarê bûyerên li Rojava rûdidin be.

Platforma ku ji sazî û dezgehên mîna nûnertiya Encûmena Niştimanî ya Kurd li Sûriyê (ENKS) û Meclisa Gel a Rojavayê Kurdistanê (MGRK) yên Almanyayê, YEKMAL e.V. û Mala Kurdan li Berlînê pêk tê, herwiha birêveberiyek ji xwe re hilbijart. Hevserokê YEK-KOMê Yuksel Koç û Armanc Agîd Nêrweyî wê berdevkiya platformê bikin û herwiha 21 beşdar jî bi armanca birêxistina kar û bar hatin hilbijartin.

# FC Kurdistan Welat: Armanc Oberliga ye






**Köln (Rûdaw) -** Herçiqasî heta Oberliga hêj rêyeke dirêj e, lê taximê Kurdên Hamburgê di van salên dawî de gellek caran bal kişandiye ser xwe. Bo mînak FC Kurdistan Welat sala borî sezon di Kreisliga 02 ya Hamburg de bi 68 puanan û 96 golan di rêza 3. de bi dawî kir. Wan bi giştî 22 maç qezenc kirin, 2 maç wekhev bi dawî bûn û 6 jî winda kirin. Baştirîn lîstikvanê FC Kurdistan Welat yê sala borî bi 27 golan Yekbun Y. bû.

Îsal jî FC Kurdistan Welat di Kreisliga 1 ya Hamburg de têdikoşe û baş dest bi sezonê kiriye. Ji 3 maçan wan 2 qezenc kirine û jî wekhev bi dawî bûye. Bi vê yekê wan ji 3 maçan heta niha 7 puan berhev kirine. Eger sezon wiha bidome, ewê îsal bikaribin gaveke baş ber bi xewna xwe bavêjin, ku ew jî weke berpirsên FC Kurdistan Welat diyar dikin Oberliga ye.

# Kurdistan çaverêyî şaciwana nû ye



**Hîwa Selah Xeyrî *Hewlêr***

**Biryar e duyem festîvala Hewlêrê ji bo hilbijartina şaciwana Kurdistanê di destpêka meha Îlonê de bê sazkirin û ev festîval jî mehekê berdewam be.**

Rêveberê bazarkirinê li Desteya Giştî ya Geştûguzariya Herêma Kurdistanê, Sîrwan Tofiq, ji Rûdawê re ragihand ku festîvala 01.09.2013 destpêdike û 01.10.2013ê bidawî dibe."

Sîrwan Tofiq derbarê hilbijartina şaciwana Kurdistanê de got: "Heta niha 53 keçan ji Zaxoyê heta Germiyan formên xwe dagirtine. Lê bi sedema meha remezanê gelekan ji xaniman nikarîbûn formên xwe dagirin. Lewma me dabeşkirina forman heta 05.09.2013ê dirêj kir.

Sîrwan Tofiq nîşan bi wê yekê da ku festîvala îsal ji ya par cudatir dibe û hejmarek beşên cuda li xwe digire, wek pêşengeha wêneyan, hilbijartina baştirîn wêneyê geştyarî û pêşengeha bazarkirinê. Herwiha beşekî taybet jî bo zarokan jî tê danîn. Festîval bi giştî ji 9 beşan pêktê. Par tenê 3 beş bûn.

Roja 27.09.2013ê wê şaciwana Kurdistanê ya îsal bi merasîmeke werê hilbijartin."

# Kejal perdeyê li ser nehêniyan radike



Stranbêja kurd a ji Rojhilatê Kurdistanê, Kejal Ademî, mijûlî berhemanîna du stranan e.

Kejal Ademî ji Rûdawê re got: "Strana Dilî Min yek e ji berhemên min ên nû ku di rojên bê de dest bi wênegirtina wê tê kirin. Di vê klîpê de ew rûmet dibe para min ku bibim mêvana aktorekî xwedî şiyan û derhênerekî jêhatî. Dilî Min dibe diyariya min ji wan dilan re ku bi bêdengî dihelin."

Kejal herwiha got: "Razî Dil strana min a duyem e ku ew jî di demeke nêzîk de ji aliyê peymangeha muzîkê ya Seba tê klîpkirin. Di vê berhemê de raz û nehêniyan kifş dikim û bêdengiyan dişikînim û perdeyê ji ser nehêniyan radikim."

- Ziman bi desthilatê tê kirin.
- A ku desthilata kurdî lê nefikiriye zimanê kurdî bû.
- Ne ligel baweriya mamoste Cemal Nebez im ji bo bikaranîna tîpên latînî.




Beriya ku helbestvanê kurd yê mezin Şêrko Bêkes koça dawî bike, ew bibû mêvanê televizyona Rûdawê. Hevpeyvîn dawiya heftiya borî di televizyona Rûdawê de hate weşandin. Hevpeyvîn derbarê zimanê hevgirtî yê kurdî û pirsa rênivîsê de ye.

**Rûdaw: Zimanê kurdî di krîzê de ye, yan ramana kurdî di krîzê de ye û di zimanê kurdî de diyar dibe?**

**Şêrko Bêkes:** Ji ber ku meseleya pirsa neteweyî ya kurdî bi xwe di krîzê de ye, bêguman wê zimanê kurdî jî di krîzê de be. Zimanê kurdî weke baxçeyekî ye ku dîwarê wê nîne. Bi dîtina min ew parçeparçebûna ku ketiye nava neteweya kurd, di meseleya ziman de jî dirust bûye. Ya niha encameke ji wan faktoran ku ji berê ve û heta niha berdewam in. Em nikarin behsa zimanekî geş û pêşkeftî bikin, di demekê de ku em ne xwediyên pêkhateyeke siyasî ya serbixwe ne.

**Ev krîz dîrokê aniye serê me ya me aniye serê xwe?**

Bêguman herdu. Eger em ne xwediyên pêkhateyeke siyasî bin, wê ziman çi bike? Çawa hev digire? Krîza me ne wek krîza zimanê erebî ye. Zimanê erebî, Quranê zimanekî standard ji wan re dirust kir ku dikarin pê bipeyvin û binivîsin. Qurana zimanê kurdî nîne. Krîza me ya herî mezin ew e ku çend rênivîs û zaravên me yên cuda hene û bi baweriya min her ku diçe krîz mezintir dibe. Hinek hene ew bi meseleya azadiyê ve girêdane, yan jî bi meseleya demokrasiyê ve. Zaraveyekî tînin û dixwazin pê binivîsin û dixwazin bikin zimanê medyayê.

**Eger ne girêdayî azadiyê be, girêdayî çi ye? Bi dîtina we, di zelalkirina hinek pirsên kultûrî de divê em meseleya azadiyê piştguh bikin?**

Na, mebesta min ew e ku zimanê kurdî ne di krîzê de dibe, eger meseleya neteweyî ne di krîzê de be. Ji ber ku ew mesele girêdayî meseleya siyasî û fikirî ye.

**Li gor we, Kurd ewqasî di krîzê de ne ku piştî serhildanê tew nekarîne biryarên dadgehan bi zimanê kurdî derxin?**

Erê, em di wê krîzê de ne. Bi vê yekê re jî ev ne demeke kêm e ku rengekî serxwebûna me heye. Lê ya ku desthilata kurdî lê nefikiriye meseleya zimanê kurdî bû. Tew di wî beşî de, çi jê re kiriye?

**Baş e, ew dîrokê aniye serê me yan me aniye serê xwe. Ev çarereşiya me ye yan xemsariya me ye?**

Bêguman xemsarî yek ji faktoran e.Lê em nikarin bêjin faktorê sereke ye. Dora 20 salan e ku cureyekî me yê serxwebûnê heye. Hikûmeta kurdî çi kar ji bo zimanê kurdî kiriye? Ez wek helbestvanekî dipeyvim. Ez ne pispor im di warê zanistî yê ziman de û ne min xwendina bilind xwendiye. Gellek mamoste û hevrêyên min di vî warî de ji min şarezatir in. Min wek helbestvanekî li ser zimanê kurdî kar kiriye. Tu bi xwe jî dizanî ku helbestvan pişta xwe bi ferhenga ziman tenê girênade. Ziman li cem helbestvan dibe zimanekî din, dibe zimanekî derbirînê yê nû, yanî ew zimanê ku baskê xeyalê wî gelekî fireh e, da ku zimanê kurdî careke din bihistre. Zimanê kurdî li cem helbestvan ne zimanê li cem dîroknivîsekî yan pexşannivîsekî normal e.

**Hikûmetê, yan dezgehên taybet, çi nekirine ku divabû bikin. Pêwendiyeke bingehînî ya wezareta rewşenbîrî bi ziman û kultûrê re heye, divabû çi bike û nekiriye? Di siberojê de divê çi bike?**



Zimanê kurdî weke baxçeyekî ye ku dîwarê wê nîne.

Pêwendiyeke xurt a meseleya ziman bi desthilata siyasî ve heye. Desthilata siyasî hinek tiştan bi cih tîne ku helbestvan yan nivîskar nikare wan bi cih bîne. Li ba miletên din jî desthilata siyasî rê vekiriye da ku zimanekî standard çêbibe. Wek mînak, ku niha biryar tê dayîn li ser meseleyeke ziman, eger bi arezû û baweriyên cihê be, ev ne bi zanîngehan dikare bê kirin û ne jî bi yekîtiya nivîskaran. Ji ber ku xelk guh nade wan. Ziman bi desthilatê tê kirin. Divê wê bike rengekî biryarê. Tecrûbeya Kemal Ataturk heye. Beriya wî nivîsandin bi tîpên erebî bû. Ataturk hat ew guhert û kir bi tîpên latînî.

**Eger krîzek hebe bi navê krîza zimanê kurdî, li ser wê yekê maye ku em Ataturkekî çêbikin, yan Mistefa Kemal encama geşbûna kultûra siyasî û ferhengî ya Tirkan bû?**

Mesele ne şaşmayîn e bi Ataturk û ramana Ataturk. Ew tenê proseyeke dîrokî bû ku ez behs dikim. Tecrûbeya Ataturk du rûyên wê hene, erênî û nerênî. Ji ber ku tiştê ku Ataturk kir wek encamp, tew ji bo ziman û kultûra tirkî, wek şûrekî dudevî bû. Ataturk kultûreke mezin a dewleta Osmanî, ku bi rênivîsa erebî hatibû nivîsandin, tine kir. Bi baweriya min, vê yekê bandoreke mezin li ser çanda tirkî kir. Tiştê ku wî ji bo zimanê tirkî kir, xwe cudakirineke mezin bû ji hemû tiştên erebî û îslamî. Ez naxwazim em wê tecrûbeyê dubare bikin. Bêguman serdem hatine guhertin. Mebesta min tenê ew bû ku bicihkirina zimanekî standard ji bo Kurdan bi rêya desthilata siyasî û biryara siyasî pêk tê.

**Eger wiha bihata û serokên hikûmetên Kurdan biryarek bidana, hûn wek helbestvanekî neteweyî bi wê biryarê razî dibûn?**

Mebesta min ew e ku ew biryar divê piştî gengeşeyeke zêde be, piştî gellek konferans û civînan, piştî ku pispor gotina xwe li ser bêjin. Wek mînak em bi kîjan zaravayî binivîsin, ji bo vê tenê bi dehan konferans û civîn pêwist in. Pêwist e ev mesele beriya biryardana siyasî bên kirin. Ez nabêjim ew mamoste roleke wan a mezin di vê meseleyê de nebû, nemaze mamoste Cemal Nebez û mamoste Îzedîn Mistefa Resûl û çend mamosteyên din. Lê dîsa pêwistiya vê yekê bi lêkolîn û civînan heye, ji ber ku biryara siyasî dikeve dawî de.

**Hûn wiha bawer nakin ku siyasetvanên vî welatî biryareke jidil nedane, ji ber ku dema konferans tên sazkirin ronakbîrên kurd li ser ziman şer dikin. Behdînî bi berçavka Dihokê li dinyayê dinêrin û Silêmanî û Kerkûkî jî bi heman awayî. Ango sedem ne ew e ku hesta neteweyî hêj lawaz e, hem li cem xelkê û hem li cem ronakbîran?**

Na, ez wiha li pirsê nanêrim. Ew berçavk jî pirr ji hevdu cihê ne. Di demekê de ku tu dibêjî berçavka Silêmaniyê, ew şêweya ku niha tê peyvandin pirr cuda ye ji yên din. Zaravayê Silêmaniyê, ku bûye şêweya nivîsandinê li pirraniya deverên Kurdistanê, heta ku digihije rojhilatê Kurdistanê jî, ev ne ji ber xwe ve hatiye, lê di proseyeke dîrokî ya dûr û dirêj de derbas bûye. Bi dîtina min ew zaravayê ku em niha pê dinivîsin divê bibe ew zimanê standard ku pêwist e di siberojê de cih bigire. Diyar e li Behdînan ew mesele bi rengekî din tê dîtin. Eger em meseleyê mezin bikin li ser asta neteweyî ya kurdî, li Bakurê Kurdistanê bi rengekî din tê dîtin. Lê di hemû rewşan de, bi dîtina min ew mesele bi dewlemendî û bi dayîna zêde ya wî zaravayî ve girêdayî ye. Di nava 200 salên borî de zaravayê niha yê Silêmaniyê bû zaravayek ku mezintirîn kitêbxane di aliyê edebiyat û hizrî de pê hatiye nivîsandin, yan bûye qaseyeke mezin ku di zaravayên din de nayê dîtin. Li vir tu biryar didî li ser dewlemendiya zarav.

**Ronakbîrekî xudan ezmûn yê wek Cemal Nebez ji sala 1957ê ve berevaniya wê yekê dike ku Kurd berê xwe bidin bikaranîna rênivîsa latînî. Ji ber ku hem di warê ciwanî û hem jî di warê naverokê de rênivîsa latînî û tîpên latînî bûne zimanekî heta radeyekê gerdûnî. Baweriya we di vî alî de çi ye?**

Ez li dijî baweriya mamoste Cemal im. Bi dîtina min ew tîpên ku niha em bi wan dinivîsin, ku di bingeh de tîpên aramî ne û me ew ji erebî wergirtine, yekem; ne tenê em bi wan dinivîsin, lê çend neteweyên din ên navçeyê bi wan dinivîsin. Dûre jî ne pirsgirêk e ku em bi van tîpan binivîsin yan bi tîpin din. Li gor min bikaranîna tîpên latînî me nake wek ronakbîrên rojavayî, yan nivîsandina bi tîpên latînî nabe sedema ku guherîn di naveroka ziman de çêbibe. Wek mînak mezintirîn ziman di cîhanê de zimanê çînî ye, ku pirr ji tîpên ingilîzî dûr e jî. Bawer dikim ew tîpên ku em niha wan bikartînin di proseyeke dûr û dirêj a geşbûnê de derbas bûne. Eger tu rojnameyeke serdema şêx Mehmûd bixwînî, yan rojnameyeke serdema Gelawêj û bi rojnameyeke niha re berhev bikî, tuyê fêm bikî ku proseya geşbûnê di qonaxên cihê cihê de derbas bûye.

**Nêrîna we çi ye li ser wan kesên ku ne xwedan nêrîna we ne?**

Tîpên latînî bi çavlêkirina Mis-


Wêne: Rûdaw

» Anîna tîpên latînî bo nav zimanê kurdî çavlêkirin bû.
» Zaravayê soranî bûye nîv zimanekî standard.
» Ez li dijî bikaranîna tîpên latînî me.

tefa Ataturk hatine nav zimanê kurdî. Lê em nêzîkî 1000 salî tîpên aramî bikartînin. Ji pêvî ku ev tîp jî weke xwe nemane. Ev rênivîsa ku niha em pê dinivisînin hejmarek tîpên wê hene, eger bi erebî binivîsî Ereb tênagihijin.

**“غ” hildibijartin, yan bi zimanekî naziktir ji canê kurdî re dinivîsanin?**

Ev tîp gellekî jî mane û ti pirsgirêkên wan nînin. Bi rênivîsa xwe em dinivîsin. Di heman demê de em dikarin heman pirsê derbarê latînî de jî bikin. Tu dibînî ku gellek tîp hene, ew jî “□, □, □” ne, wek nimûne tu nikarî van bikarbînî.

**Lê wek nimûne Kh deyne li cihê (غ) yan Ch li cihê (ض) yan Sh li cihê (ش). Nêrîna we beramber vê çi ye?**

Ti pirsgirêka me nîne ji van tîpên ku niha em pê dinivîsin. Ev tîpên latînî ji pêvî çavlêkirinekê, ne tiştekî din in. Ti rêya wan a dîrokî nîne. Beriya salên bîstan ji sedeya borî tiştek pê nehatiye nivîsandin. Dibe ku hinekan pê nivîsandibin lê qet nebûye diyardeyek. Ji pêvî vê jî, çima emê hejmarek pirsgirêk ji bo xwe pêk bînin. Weke ku min got, ne tenê Kurd bi van tîpan dinivîsin, Fars û Afgan jî. Ez li dijî bikaranîna tîpên latînî me. Hez dikim dubare bikim weke nêrîna xwe, xelkên din jî azad in ku nêrînên wan çawa ne. Pirsa krîza ziman ji krîza azadiyê ji bo gelê me hatiye. Di nêrîna min de ev jî bi hêsanî çareser nabe. Pirs jî ne bi pirranî û kêmanî ye, ku eger pirranî li Kurdistanê bi vî awayî dinivîsin, divê em kêmtirîn weke wan binivîsin. Wek nimûne zimanê frensî zimanê biçûk ê navçeyeke biniya Parîsê bû, lê navçeyeke ku cihê kultûr û geşkirina raman û huner bû, ew bû zimanê standard.

**Aliyên vê nêrînê dibe ku bêjin çima mamoste Şêrko Bêkes Belûc, Fars û Afganan dibîne ku bi vê rênivîsê dinivîsin. Lê nîvê zemînê nabîne ku van tîpan bikar tînin?**

Ew ya wan e. Çi pêwîst dike em wan tîpan bikarbînin. Di demekê de ku ji sedên salan ve em tîpên erebî bikar tinin, gencîneyeke me heye. Piştre pirsgirêk di vê de ye ku kî vê sermiyana me ya kultûrî dibe ser vî awayê ziman. Çi garantî heye ku ev sermiyan têk neçe, weke ku li Tirkiyeyê têkçû.

**Lê nêrînek heye dibêje ku Mistefa Kemal bi xwe dixwest xwe ji vê kultûrê bibirre. Ev arezûya Mistefa Kemal bû ku nedixwest kultûra osmanî biguhêze nav bîr û hişê vê neteweyê. Ma em nikarin Mehwî, Nalî, Salim, Kurdî, Goran û rehmetiyê bavê te, bi latînî jî bînin nav bîr û hişê nifşê nû?**

Pirs ne ji helbestên hejmarek ji helbestvanan tenê pêktê. Pêwîst e tu zanibî ku pirtûkxaneyeke mezin pêk hatiye. Kî wê ji me re wan bîne ser rênivîsa latînî. Tew li Tirkiyeyê nikarîbûn çareyekê ji van tiştên ku bi erebî hatibûn nivîsandin bînin ser rênivîsa latînî.

**Siberoja vê bo kû derê diçe?**

Nizanim siberoj bo kû derê diçe. Pêwendiya vê siberojê bi hejmarek ji tiştên din ên dîrokî, siyasî û ramanî ve heye.

**Siyasî weke çi?**

Pirsa ziman pêwendiyeke wê ya sereke bi pirsa bûniyetiya siyasî re heye. Ez dibînim ku bi serxwebûna Kurdistanê, bi yekîtiya hemû Kurdistanê, em dikarin hukmê dawî bidin ku em dikarin çi bikin. Lê ji ber ku niha di vî beşî de celebek ji azadiya me heye, divabû biryareke xurt a desthilata siyasî hebe, da ku pirsa vê şêwezarê çareser bike.

**Gotina çareseriyê ji aliyê we ve tê çi wateyê? Hikûmeta Kurdistanê van xeyal û fakteyên ku cenabê we behs dike dikare bike biryar?**

Divê bername hebe. Hikûmetê tiştek ji bo pirsa ziman nekiriye. Niha ku ez û tu vê behsê dikin, ev pirs bi vî awayî ye ku ev mebestî be, têxe nav civakê ji bo ku axaftin li ser be. Piştre biryarê li ser bide. Ev nebû. Tiştê ku guhdan pê nebûye zimanê kurdî bû. Li vir yek du têbîniyên din hene ku hez dikim bêjim, ew jî ew e ku di demekê de, ez behsa vî şêwezarî dikim ku li cem min bûye şêwezarê nîvstandard yê kurdî, divabû ji aliyê hikûmetê û ji aliyê parlementoya Kurdistanê ve bibe biryar.

**Hûn wiha nabînin ku divê beriya wê rêziman bikin yek?**

Niha ne ku tenê du şêwezar in. 4-5 celeb şêwezar hatine, ku bi wan tê nivîsandin û kanalên wan ên ragihandinê hene. Ev celebek ji nerêkiyê ye, di nav ziman de. Em li şûna pirsgirêkan kêm bikin, pirsgirêkên din ji bo xwe zêde dikin.

**Baş e, çima hûn wê wek nerêkiyê dibînin. Mebesta we ji nerêkiyê ew e ku mirov kurmancî, soranî û şêwezarên din bikarbînî. Niha kanala Kurdsat û Zagros bi herdu şêwezarên kurmancî û soranî nûçeyan dixwînin. Çi nerêkî tê de ye?**

Mebesta min ne kêmkirina guhdanê bi şêwezarên din yan bikarneanîna wan e. Lê cuda ye ku tu şêwezarekî dikî fermî, dikî zimanê standard. Di vê haletê de hejmarek tiştan jê re pêktîne, ku divê peyrew bibin. Ev ne wateya wê ye ku ez ne ligel pirsa dewlemendkirinê me. Wate, dewlemendkirina ziman bi gotinên şêwezarên din ên Kurdistanê, ku bêhtir dewlemend dike. Nabe samana me her ev gotin bin, ku li navçeya Silêmaniyê, Mehabad û Kerkûkê hene. Di nêrîna min de divê dewlemendtir bibe.

**Niha li hinek navçeyên Kurdistanê celebek ji axaftina “sormancî” peyda bûye, dibe beşek li bin bandora vê medyayê bê ku bi herdu şêwezaran, bi herdu tîpên aramî û latînî dinivîsin. Siberoja zimanê kurdî tev nebe hevgirtina van herdu diyalektan?**

Nizanim ev ber bi kû derê ve dihere. Lê niha jî bikaraîna du şêwezimanan, ku em negihiştine qonaxa ku serxwebûna me hebe, ne ziyan e. Lê ku bû bi sê, çar, pêncan, em nizanin çi bikin û serê me jê gêj dibe. Te dîtiye di nav miletekî de çar pênc şêweziman hebin? Bi her çar pênc şêwezimanan axaftinê bikin û pê binivîsin? Herwiha kanalên wan ên ragihandinê hebin? Ne wiha ye. Eger ez gotina xwe kurt bikim, wiha ez li ber dikevim ku krîza zimanê kurdî heye, çi wek rênivîs, çi wek tîpa nivîsandinê. Ev qeyran jî ji parçeparçebûna Kurdan bi xwe hatiye. Ji wê yekê hatiye ku em bêyî bûniyetiyeke siyasî bûn. Di serdemekê de, ev şêweziman her carekê heta ji bo wêje jî rişma wî di dest şêwezimanekî de bû.

Demekê ew rişm di destê kurmanciya jorîn de bû. Serdemekê di destê Erdelaniyan de bû. Di serdema dawî de jî, beriya 200 salî hatiye vê derê. Li ser destê Nalî, Salim û Kurdî ev şêweziman bi cih bûye. Piştî wê jî, bi dû hejmarek qonaxên siyasî de, ev şêweziman bû wek şêwezimanê vê qonaxê. Serdema Şêx Mehmûd, serdema Komara Mehabad, heta tevgerên siyasî yên kurdî li vî beşê Kurdistanê nivîsandin û axaftina wan bi vî şêwezimanî bû. Wek nimûne Mela Mistefayê Barzanî bi vî şêwezimanî axaftin ji bo xelkê kir. Bi vî şêwezimanî nameyên xwe nivîsandin. Ez bi xwe pê re rûniştim, bi vî şêwezimanî diaxivî. Idrîs Barzanî çiqas name ji bo min nivîsandin, hemû bi vî şêwezimanî bûn. Heta serdema 11yê Adarê ji bo pirsa xwendinê ev şêweziman hate hilbijartin. Ev jî bi pêdagiya Mela Mistefayê Barzanî bû. Em di navbera hejmarek şêweziman de ne. Kîjan ziman heye ku tu hilbijêrî û bike bingeh? Bê guman ew zimanê ku bêhtir daye.



**Em nikarin behsa zimanekî geş bikin, eger em ne xwediyên pêkhateyeke siyasî bin.**

*Hevpeyvîn:* ***Renc Sengawî***



# Tevliheviya zanyariyan

Selahattin Çelik

Îro Rojhilata Navîn li seranserê dinyayê erdê herî tevlihev e û Kurdistan di navenda wê de ye. Nakokî, şer, komkujî, xizanî, pirsgirêkên civakî, astengiyên demokrasiyê û bi awayekî hovane rûxandina xwezaya herêmê...

Weke ku sonda hev xwaribin, bi navê olî, neteweyî û partîtiyê hev dikujin, bi mîlyonan însan welatên xwe diterkînin, bi gund û bajar, hêjahî û bi dîroka xwe welat dişewitin. Herêm bi bûyerên nû diwerime, ber bi dînîtî û teqîne ve diçe. Eger em paşeroja civakî û dîrokî ya bûyeran nas nekin, em nikarin wan şîrove bikin û bibin xwedî helwesteke rast.

Ka em şerê mezhebî bidin ber çavên xwe; mirov çawa wisa bi çavsorî û hêsanî dikare hev bikuje û kuştinan bi sedemên olî bişoyê û rewa bike? Di pirsa mafên neteweyî û kêmaniyên nîjadî û olî, demokrasî û yên din de jî, heman binpêkirin û tawankarî li dar e. Ango divê em bûyeran bi sedemên civakî û dîrokî binirxînin. Tenê bi vê rêyê mirov dikare rêya ji qeyran û aloziyê derketinê bibîne. Tenê hingê dibe ku tevliheviya herêmê bibe sedema hişmendî û tevgereke pozîtîf.

Ji derên din yên dinyayê mînak hene. Di Serdema Navîn de şerê burjuvazî û feodaliteyê rê da demokrasiyê. Di Xiristiyaniyê de şere Katolîk û Protestanan, ku hevûdin dişewitandin, rê da rasyonalîzm û reforman. Şerê Cihanê yê 1mîn û 2mîn yên neteweyan li dijî nîjadperestiyê rê dan xweşbînî û lihevkirinê. Van guhertinan, rê da şoreşa teknolojiyê, hişmendiya civakî û hawirdorparêziyê, berhem jî bû xweşî û dewlemendiya gelan.

**Ma Salih Muslim ne di bergeşa guran de li nan digere?**

Hûnê bêjin ku cografyaya Rojhilata Navîn ji diyardeyên Ewropayê dûr e, çanda olî û civakî rê nade feraseta demokrasî, reform û xweguhertinê. Çi be jî, neguhertin li dijî zagonên civakî ye, divê em bi mehneyên derveyî ve nezeliqin, divê em bi keftûleft zirav bikin û ronahiyê bidin nexweşiyên navxweyî.

### Tehran û Enqere xwedî yek helwest in?

Gava Enqere gazî Salih Muslimê PYDyî dike, hima dûvre Tehran doza serdanê lê dike. Wê hinek ji me bêjin ku herdu paytextên dijminê Kurdan bi hev ketine, ma ji vê xweştir tiştek heye?

Derbarê serdanan de em ne xwedî zanyariyên rast in. Ev jî şirovekirinê zehmet dike. Lê em xwedî azadiya pêşbînîkirinê ne. **Mînak:** Em dikarin bêjin ku tevî nakokiyên kûr jî, di pirsa Kurd de Enqere û Tehran xwedî helwesteke hevpar in, yekparebûna Sûriyê diparêzin û rê li ber desthilateke nû ya Kurdan digirin. Jixwe Enqere di pirsa Sûriyê de Tehranê weke berpirsiyara Şamê jî dibîne. Em vê şêwirmendî û hevpariya herdu paytextan ji name an jî tamîma Ocalan ya 21ê Adarê baş dizanin. Ma Salih Muslim ne di bergeşa guran de li nan digere?

### Ocalan hêj bi 'dewletê' re diaxive!

Rayedarên hikûmeta AKPê bi her boneyê tînin ziman ku "xetên sor yên dewletê dişopînin". "Xetên sor" ev in: Tirkiye yekpare ye, zimanê fermî tenê tirkî ye û ala Tirkiyeyê yek e.

Bendewarî heye ku wê hikûmet di Îlon an jî Cotmehê de hin gavên "çareseriyê" diyar bike. Herçiqas em naverokê nizanibin jî, li gorî daxuyaniyan, bi fermî bikaranîna zimanê kurdî û mafên weke xweseriyê ne di rojevê de ne.

Em ji daxuyaniyên rêvebirên PKKê û BDPê û ji hevdîtinên bi Ocalan re digihijin wê ramanê ku ew jî ne li benda tiştên mezin in. Li vir pirsa min ev e: *Eger rewş ev e, çima hûn xwe hêj bi xwedêgiravî guftûgoyên Ocalan yên bi dewletê re girê didin? Eger bi encamên rêzkirî guftûgo berhemdar in, çima ew gefxwarinên vala?*

### HDP an jî BDP?

Li Tirkiyeyê hilbijartinên şaredariyan dikeve rojevê (li gorî planê: 27.03.2014). Ji hevdîtinên Îmraliyê em fêr dibin ku Ocalan pêşniyazeke nû kiriye û xwestiye ku Kurd bi navê Partiya Demokratîk ya Gelan (HDP) bikevin hilbijartinan.

HDP di 11.11.2012ê de hatiye damezrandin. Ji vê partiyê çar kes, sê jê Tirk, di hilbijartina dawî de bûne parlementer. Herçar jî, li bajarên mezin yên Tirkiyeyê bi dengên Kurdan hatine hilbijartin. Ango di hilbijartinan de hêza çepgir û demokratên tirk, ya hevalbendên tevgera Kurd, zêde bêxêr bû.

Lê ji HEPê heya BDPê, ji 1991ê heya îro, parlementer û şaredarên kurd hemû bi bîrdozî û siyaseta neteweyî bi ser dikevin. Û ji çepgiran heya Elewî û bawermendên olî yên misilman, komên cuda bi hestên neteweyî dengên xwe didan wan. Eger mirov tevgera kurd bixe bin çengên partiyeke Tirkiyeyê, bêguman wê dengdêr vebijarkên bîrdozî bidin pêş û wê di dawiyê de Kurd winda bikin.

**Dibe ku hêzeke veşartî hewl dide ku bi her awayî tevgera kurd bimije nav civak û siyaseta Tirkiyeyê.**

Tevî ku bûyer weke reş û spî fesîh e, lê çima ev pêşniyara çewt? Dibe ku hêzeke veşartî hewl dide ku bi her awayî tevgera kurd bimije nav civak û siyaseta Tirkiyeyê. Divê BDP hewqas ne hişsivik be. HDP jî tenê bi piştgiriya Kurdan ranabe ser piyên xwe. Divê bi piştgiriya Tirkan bibe hêz.

### Derî vebû, lê dûvre?

Di rojên dawî de di ser 20 hezaran Kurdên Rojavayî reviyan Başûr. Divê bi hevalbendiyeke dilsoz bên pêşwazîkirin, ev erkek e. Lê li vir dixwazim hayê bikişînim ser qelsî û bêtevdîriya partiyên me.

Gelo me bi bêtevdîrî dar nexistibû qula mozan? Bi bûyerên dawî diyar e ku hikûmeta Başûr û partiyên wê zêdetir tevlî pirsgirêka Rojava dibin. Ev barekî giran e, ne tenê barê koçberan e. Başûr hedî hedî ber bi partiyeke şerbûnê ve diçe. Gelo kes û partiyên ku Başûr bi vê rêyê ve dehf dane, hay jî xetere û lîstikê hene? Eger listik û xefik be, bi zanebûn tê de cih digirin, an jî ne? Gelo wê pêşdestiya Başûr nas bikin? Wekî pirs hewqas berfireh û dijwar bûye, çima ne helwesteke hevpar? Ma li ser derfet û keda yên din, û li ser bar û êşa koçberan, tevgerîna di berjewendiya partiyekê de êdî qet çêdibe?

# Miriyê bêyî gor

Luqman Silêman



Li gor projeyên ku hêdî hêdî ber bi dawî ve diçin û her yek rol û cihê xwe werdigire, wê hejmarek ji partiyên me yê kurd li goristaneke ne diyar werin bicihkirin, eger ku wan berê gora xwe destnîşan nekiribe. Ez bawer im niha karûbarê merasîma bicihkirina wan tê kirin, ma gelo ew vêya dizanin?

Li gor dîtina min, niha lîstikvanên sereke yên herêmê yên ku amadekariya projeya Sûriya siberojê dikin, dibe ku hêj agirê xwe gurr nekiribin û ew agir wê hêdî hêdî li binê beroşê dixe. Lewra jî li gor wî agirê ne gurr, ji PYDê re li şirîkekî digerin û tiştê ku xuya dibe wê ew şirîk Partî be. Gereke herdu bi hevre îdareya herêma kurdî li Sûriyê bikin. Ji ber vê lêgerînê ez dibêjim partiyên me, û bi kêmasî yên ku di meclisa kurd de ne, yan divê ji xwe re tevlî partiya Dr. Hekîm bibin û yan ji xwe re tevlî ya mamoste Muslim bibin û yan divê careke din li ser wê rêbaza ku çil sal in bikardianîn berdewam bikin, ev jî eger ku lîstikvanê sereke rê bidin wan ...

Rast e ku îro herdu partî ne li hev in û di medyayê de jî baş şerê hev dikin û yek nikare li yê din binêrê, lê em ji bîr nekin ku demekê kak Mesûd û mam Celal jî ne li hev bûn û bi sedan xortên ciwan ji hev kuştin, lê ji ber ku berjewendiyên xelkê di lihevhatina wan de hebûn, ew birin cem xwe û li hev anîn.

Dibê ku ev lîstika van ne ew be û dem jî ne ew dem be, lê berjewendî ew berjewendî ne û wê careke din wan bibin cem hev û wan li hev bînin. Lewra jî ev partiyên ji derveyî herdu partiyan wê bi kû de herin?

Tevî ku ji demekî de rûyê vê neqşeyê hatine xuyakirin, lê ez bawer im wê bi wî rengî nemîne, ji ber ku wê desthilatdarî û berjewendî têkevin meseleyê û rola xwe bilîzin û wê nema ji wan re wisa biserifê. Da ku ew partî karibin bijîn, tevî ku ne li gor mejiyê wan û berjewendiyê wan be, para wan hindik be jî, pêwîst e ku di vê qunaxê de ew cihekî ji xwe re bigirin, yan li cem Partî û yan li cem PYDê.

**Gereke ew di bin baskê PYDê de werin bişaftin û bi rengekî ji rengan ew ji holê rabin.**

Partiyên ku li Silêmaniyê dimînin, bêyî ku em wan binavbikin, gereke ew di bin baskê PYDê de werin bişaftin û bi rengekî ji rengan ew ji holê rabin û yên ku li Hewlêrê dimînin di bin baskê Partî de werin bişaftin. Lê li wir dimînê Yekîtiya ku rêzdar Birahîm Biro îro serkêşiya wê dike, ewê bi kû de here? Ji ber ku lingekî wê li Hewlêre û yek li Silêmaniyê ye û heta niha nikarîbû ji xwe re tiştekî qezenc bike. Ez bawer nakim ew lîstikvanên sereke yên ku serkêşiya lîstikê dikin bihêlin ku îro opozisyoneke kurdî ya bihêz û berçav li dijî van herdu xetan di vê qunaxê de cih bigire. Yek rê li ber Yekîtî heye; yan wê parçe bibe û her parçeyek wê ji xwe re bi cihekî de herê û yan jî wê destê xwe di ber xwe de berdê û bi rengekî ji rengan hevalên xwe razî bike ku lîstika îro ji wan mezintir e û ew ne amade ne ku xwe di zikê xetekî ji van xetan de bide bişaftin û li benda qunaxa duyê ya lîstikê be.

Lê tiştekîn din jî li vir heye; ne pêwîst e ku şirîkê PYDê Partiya Dr. Hekîm be, dibê ku lîstikvan şirîkekî din ji van partiyên heyî be, yan ji nava gel ji PYDê re çêbikin, da ku ew bi tena serê xwe desthilatdariyê li deverê neke. Ew jî dimînê ka wê kak Mesûd dest ji dostê xwe yê kevnar berde û beramberî wê devjêberdanê çi bistîne…

Lê di dawiyê de em tev dibînin, belkî berê lîstikê bikeve deverin din û lîstikvan tev werin guhertin û projeyên din li ser agir bin, lê hêj dûyê wan derneketibe…

## Şerê vekirî



**Helîm Yûsiv**

Bi avakirina odeya operasyonên leşkerî li bakurê Sûriyê, ku bi navê Artêşa Azad hate damezrandin, şerê ku berê di navbera çekdarên Cebhet el-Nusra û Hêzên Parastina Gel YPG de bû, derbasî qonaxeke nû bû. Ev qonax xwe dispêre paşxaneyeke siyasî. Bi awayekî ku vê yekê perde ji ser tabloya siyasî û ya çekdarî bi temamî da alî. Destpêkê, têkiliya Artêşa Azad bi awayekî fermî bi çekdarên Cebhet el-Nusra û çekdarên Dewleta Îslamî ya Iraq û Sûriyê re pirr zelal bû. Beriya demekê efserekî Artêşa Azad li ser destê wan hatibû kuştin, piştî wê jî nûçeya kuştina dîndarê xiristiyan Pawlo li ser destê heman çekdaran hatibû belavkirin. Li pey wê rasterast êrîşî wargeha yekîneya neviyên Muhamed, ku yekîneyeke Artêşa Azad bû li Reqqayê, kirin û ew ji hole rakirin. Bi van bûyeran re deng ji hêla Artêşa Azad ve bilind bûn û behsa girêdanên van çekdaran bi rejîmê ve hate kirin. Wisa jî ev bûyer di bin çavên mezintirîn rêxistina rikberiyê ya siyasî, Hevpeymana Niştimanî ya Sûrî, de qewimîn û pirsa ku ev rikberiya siyasî dikare van çekdaran li wê derê rawestîne yan na, hate holê.

Dîmen gava ku girêdayî hemû herêmên Sûriyê be, bi vî rengî ye. Lê, dema ku mesele dibe meseleya Kurdan û herêmên wan û şerê li hember wan, ev pîvan hemû têne guhertin û ji nişkê ve Cebhet el-Nusra jî, Dewleta Îslamî ya Iraq û Sûriyê di nav de, dibin yekîneyên Artêşa Azad û hemû bi yek destî, bi yek helwestê û bi yek hêzê tên cem hev û bi behaneya ku ewê çekdarên PKKê ji hole rakin, dest bi êrîşkirina herêmên Kurdan dikin. Vê carê ji bilî yekîneyên Artêşa Azad û yên îslamî, yekîneyên cehşên kurd jî tevlî xwe kirin. Yekîneyên mîna Cebhetulekrad ya îslamî û yên Komele û Yûsif Elezma û Selahuddîn û herwisa bi wayekî eşkere çekdarên el-Qaîde cih digrin û di bin navê Artêşa Azad de xwîna Kurdan dirijînin û dixwazin dest deynin ser herêm û warên wan. Di vî şerê vekirî û eşkere de rikberiya siyasî jî piştgiriyeke bêsînor dide van hêzên çekdar û bi zanebûn geh behsa têkiliya PYDê û rejîmê dikin û geh jî tenê nave PKKê bikartînin, da ku rewabûnê bidin vî şerî.

**Li hemberî odeya operasyonên bakurê Sûriyê, ku hêzên Artêşa Azad û yên îslamî û cehşên kurd anîn cem hev, pêdiviya Kurdan jî bi odeyeke hevbeş ya operasyonên siyasî û çekdarî heye.**

Balkêş e ku di şerê li hember Kurdan de bi şêweyekî asayî navê Cebhet el-Nusra wekî beşekî ji Artêşa Azad derbas dibe. Li aliyê Kurdan jî dîmenê jihevbelavbûn û nelihevkirin û nakokiyên bêdawî her û her serî hildide. Ji bilî derbasbûna bi hezarên Kurdên Rojava ji bo Başûrê Kurdistanê û bandora giran ya vê koçberiyê li ser siyaseta tevgera siyasî, behsa lihevkirina di navbera partiyên Yekîtiya Siyasî ya Kurd û rêxistina Hevpeymaniya Niştimanî ya Sûrî de hat kirin. Wisa jî lihevnekirina el-Partî û PYDê deriyên herêmên Kurdan li ber ba û bahozên cihê vekirî hiştin. Li hemberî odeya operasyonên bakurê Sûriyê, ku hêzên Artêşa Azad û yên îslamî û cehşên kurd anîn cem hev, pêdiviya Kurdan jî bi odeyeke hevbeş ya operasyonên siyasî û çekdarî heye, ku hemû Kurdan, bi hemû partî, rêxistin û bîrûbaweriyên cihê, bîne cem hev û li hember vî şerê vekirî û berfireh berxwedaneke berfireh, hevbeş û bi hev re bimeşînin.

## Herêma Kurdistanê dişemitê nav pirsgirêka Sûriyê



**Hîwa Cemal**

Hino hino Herêma Kurdistanê dike ku ji ber Rojavayê Kurdistanê bişemite nav bûyerên li Sûriyê, bêyî ku encama wê zanibe.

Şemitandina Herêma Kurdistanê ya nav bûyerên Sûriyê bi rêya Rojavayê Kurdistanê û herdu partiyên desthilatdar PDK û YNKê ye, nemaze PDKê, ku dest bi şerê sar li dijî PYDê kiriye.

Ev herdu partiyên Başûrê Kurdistanê, nemaze PDK, sazî û dezgeh û desthilata xwe li Başûr bikartînin ji bo kontrolkirina Rojava, ji ber vê jî PYDê ligel Herêma Kurdistanê û ligel PDKê bi taybetî dest bi şerê sar kiriye.

Daxuyaniya serokê Herêma Kurdistanê derbarê Rojava de (piştî dirustkirina komîteya lêkolînkirina rastiyan) ew şemitandin gihand qonaxeke nû, nemaze danîna gumanê li ser wê yekê ku li Rojava komkujî çêbûye yan na. Herwiha doza pêkanîna komîteyekê li komîteya amadekar a kongreya neteweyî ya kurdî, ku here Rojavayê Kurdistanê, ew şemitandin bir qonaxeke din.

Serokê Herêma Kurdistanê serokê PDKê ye jî, ji ber wê nabe em gumanê bikin ku bandora gotûbêjên endamên polîtburo û serkirdayetiya partiya wî li ser tine be, di demekê de ku gotûbêja bihêzbûna pêgeha xwe ya partîtî dikin, lewma doza wî jî bêhna şerê sar ê di navbera PDKê û PYDê de jê tê.

Eger na, di vê cenga Sûriyê de, ku welatên mezin wek Amerîka û Rûsya berberiyê li ser dikin, ji bilî welatên derdorê, ku her yek ji wan çavkaniya cengê vedigerîne wan herdu seriyan, çawa Herêma Kurdistanê wiha rasterast xwe di pirsgirêka Rojavayê Kurdistanê de werbibe. Jixwe nabe em bêjin Herêma Kurdistanê jî beşek ji wê lîstika cihanî ye.

Ew hêzên cihanî û herêmî yên ku bi rêya civata ewlekariyê lîstikên xwe li Sûriyê dikin û bi rêya NY li rastiyan digerin, neku rasterast komîteyê pêk bînin û herin hundirê Sûriyê, jixwe ev jî girêdayî wê yekê ye ku di rewşekê de wernebin ku dûre bi hêsanî jê dernekevin, nemaze ew herdu hêzên mezin Amerîka û Rûsya, herdu jî pêşkarên wan ên bi vî rengî hene. Rûsya wek Yekîtiya Sovyêtê ya berê di kêşeya Afganistanê de werbû û Amerîka jî di kêşeya Iraq û Afganistanê de.

Gava li ser doza serokê Herêma Kurdistanê komîte ji bo Rojavayê Kurdistanê tê şandin, armanc jê çi ye? Ji bo derxistina rastiyan e, ji ber çi? Van rastiyan wê bidin kê? Wê çi kar li ser wan bê kirin? Kî desthilata wî heye ku li Rojava rewşê rast bike, eger rastî wek ku tê gotin derkevin? Ev komîte ti pêwendiya wê bi NY heye? Di aliyê navneteweyî de naskirî ye?

Dibe ku serokê Herêma Kurdistanê ketibe şaştiyê, gava doza pêkanîna wê komîteyê kir, şaştî jî bi rêya partiya wî pê hatiye kirin. Ji ber ku ne tiştekî veşartî ye ku li Rojava di navbera PDKê (Başûr) û PYDê de nakokî heye.

Girtina sînorê di navbera Başûr û Rojavayê Kurdistanê de her carê ji aliyekî û vekirina wî jî bi heman rengî, wê cengê eşkere dike, herwiha tê gotin ku destpêkirina koçberiya van çend rojên borî her heman ceng e û PDK li Başûr dixwaze bêje vaye xelk çawa wek lehiyê ji bin destê PYDê direvin.

Vekirina sînor û koçberiya xelkê Rojavayê Kurdistanê dibe ku ziyaneke welatî û neteweyî li dû xwe bîne, nemaze di aliyê valakirina navçeyên Kurdistanê de.

Ev berberiya di navbera partiyên Başûr û Rojava de dike ku çarenivîsa kongreya neteweyî ya kurdî jî ber bi sernişîvê ve bibe, ji ber ku kongreyeke serkeftî nabe, eger li derveyî salona kongreyê şer be û li hundir jî zorbazên wî şerê sar gotûbêjê bikin.



## Ligel bihêzbûna Kurdan

# Petrol: Kelema li ber hevgirtina Iraqê

**Armando Kurtuba**
*Hewlêr*

Bihêzbûna Kurdan di reftarkirina petrolê de û lawaziya hikûmeta navendî ya birêvebirina wê, dide nîşandan ku şerê petrolê yê di navbera Hewlêr û Bexdayê de dikare bibe kelema herî mezin ya yekparebûna Iraqê.

Çend sal in Herêma Kurdistanê û hikûmeta şîî ya Bexdayê hewl didin ku petrola yedek ya Başûrê Kurdistanê, ku pispor wê wek pêncem dewlemendtirîn navçeya cihanê rêz dikin, kontrol bikin. Hebûna petrola yedek li wê navçeyê wekî zêdeyî 45 milyar bermîlan tê texmînkirin.

“Zêrê reş yê Iraqê” aloziyeke mezin di navbera van herdu hikûmetan de pêk tîne. Digel serdanên herdu aliyan yên ji bo çareserkirina nakokiyên girêdayî petrolê, hê jî çareseriya dabeşkirinê bi awayekî zelal nayê dîtin.

Beşekî zêde ya kêşeyên petrolê jî ji ber analîzkirina cuda ya destûra Iraqê ya derbarê pirsa reftarkirina petrolê de rû dan. Armanca wê destûrê ew bû ku li Iraqeke nû ya demokratîk balanseke rewa û qanûnî di navbera Şîî, Sunnî û Kurdan de were ragirtin. Di destûra Iraqê ya 22 rûpelî de behsa dahata petrolê jî hatiye kirin.

Li gor heybera destûrê “Petrol û gaza li hemû herêm û parêzgehan malê tevahiya xelkê Iraqê ye”. Kurd di wê baweriyê de ne ku li gor destûra Iraqê mafê wan heye ku girêbestên petrolê îmze bikin û bi rêya boriyên xwe yên petrolê, yên ku wê îsal temam dibin, petrolê bişînin Tirkiyeyê.

Boriyên petrolê, bêyî ku kontrola hikûmeta navendî li ser hebe, dergehê Ewropa û cihanê li ber şandina petrola Herêma Kurdistanê vedikin. Lê li gor rapora nirxandina petrol û gaza Herêma Kurdistanê ya sala 2013ê, Bexda li dijî vê ravekirina destûrê ye û li gor wê tenê ew dikare samana Iraqê bifiroşe.

Wezîrê Samanên Xwezayî yê Herêma Kurdistanê, Aştî Hewramî, di hevpeyvîneke de diyar kir ku ew ji serweta Iraqê doza para xwe ya dadperwer dikin. Li gor Hewramî, lewra ew ji bo hevgirtina Iraqê jî şer dikin.

Di Tîrmeha 2012ê de Herêma Kurdistanê 30 hezar tonên petrola xam şand qeraxên Deryaya Spî ya Tirkiyeyê û ev yek jî berevajî daxwaza Bexdayê bû.

Digel peymana sala 2012ê ya di navbera Herêma Kurdistanê û hikûmeta navendî de jî, hêj Bexdayê bi tevahî pereyên şîrketên ku li Herêma Kurdistanê kar dikin nedaye. Herêma Kurdistanê wekî mafê wan şirketan tenê 537 milyon Dolar wergirtin lê belê doza 3.5 milyar Dolaran kiribû.

Wezîrê Samanên Xwezayî yê Herêma Kurdistanê, Aştî Hewramî, di konferanseke petrolê ya ku meha Pûşberê li Londonê hate sazkirin de, wiha axivîbû: “Em baştir dibînin ku ligel hikûmeta federal kar bikin. Lê pêwist e ew yek jî bê gotin ku eger beşekî welat ne serkeftî be, nabe navçeyên din jî pê re bên girêdan.”

Hikûmeta Herêma Kurdistanê derbarê temamkirina boriyên petrolê yên ber bi Tirkiyeyê ve daxwazên Bexdayê piştguh kirine. Piştî xelasbûna wê hêlê, Kurdistan dikare petrola xam bişîne Tirkiyeyê. Li gor Reutersê ew hêl dikare rasterast rewşa enerjiyê li Iraqê biguherîne. Herwiha li gor raporeke wezareta Samanên Xwezayî, Herêma Kurdistanê bi hêvî ye ku di sala 2015ê de rojane zêdeyî milyonek bermîlên petrolê hilberînê.

Kerkûka bi petrolê tijî, roleke sereke di nakokiya di navbera hikûmeta Herêma Kurdistanê û hikûmeta navendî de dilîze. Li gor raporeke navenda lêkolînên aborî ya Rojhilata Navîn, Kerkûk rojane 260 hezar bermîlên petrolê hildiberînê. Herwiha yek ji navçeyên herî giring yên Iraqê ji bo berhemanîna petrolê ye. Lewma Bexda naxwaze wê bixe bin desthilata Herêma Kurdistanê.

Boriyên petrolê yên nêzîkî Kerkûkê bi boriyên din re hatine girêdan ku di Bexda, Besra û bajarên mezin ên Iraqê re derbas dibin. Sala 2012ê hikûmeta Herêma Kurdistanê hêzên pêşmerge şandin Kerkûkê, ji bo valahiya ewlekariyê li wir tijî bikin. Lê Bexdayê ev hewldana Herêma Kurdistanê wekî plana bi mebesta kontrolkirina Kerkûkê û çavkaniyên wê yên petrolê bi nav kir.

---




## Çînê jî çavê xwe berdaye petrola Kurdistanê

**Armando Kurtuba**
*Hewlêr*

Beşekî mezin yê petrola Iraqê ji aliyê şîrketên çînî ve tê deranîn, lê wiha dixuye çavê Çînê lê ye ku xwe li Kurdistanê jî xurt bike. Şîrketên çînî di sala 2009ê de dest bi karkirina li zeviyên petrolê yên Kurdistanê kirin, piştî ku grûpa Sinopec şîrketa Adax Petroleum kirrî, ku bi hevbeşî ligel Genel Enerji li zeviya petrola Teqteqê kar dike.

Rêveberê cîbicîkar yê şîrketa Adax Petroleum, Yî Jang, di raporteke derbarê grûpa Sînopec de dibêje: “Sînopec mezintirîn şîrketa petrolê ye û şiyaneke wê ya bê mînak heye di pêşxistina sektora petrolê de li Kurdistan û seranserê Iraqê.”

Di van deman de jî şandeke çînî ji bo behskirina mijara hilberînê di çend sêktoran de, ku yek ji wan petrol bû, serdana Herêma Kurdistanê kir. Şêwirmendê wezîrê samanên xwezayî, Michael Howard, got ku haya wî jê nîne ku ji bilî Sînopec şîrketên çînê yên din bixwazin beşdarî hilberîna petrola Kurdistanê bibin: “Herêma Kurdistanê xwedî şiyaneke aborî ya mezin e û hejmareke zêde ya veberhêneran ji welatên cihê hatine Kurdistanê. Dibe ku hinekan ji wan bi awayê şîrketên normal hatibin Kurdistanê û pêwist nekiribe em pê bizanin.”

Her çiqasî balyozxaneya Çînê li Iraqê bersiva me neda, lê diyar e ku Çînê çavê xwe berdaye Kurdistanê, da ku bi rêya Adax Petroleum hilberîna petrola li Kurdistanê bike. Rêveberê cîbicîkar yê şîrketa Adax Petroleum, Yî Jang, di raporteke din de dibêje: “Em hêvîdar in ku derfetên baş ji bo Adax Petroleum û Sînopec hebin, da ku bi wekhevî ligel şîrketên din li zeviyên Kurdistanê hilberînê bikin.”

Rojnameya New York Times jî vê dawiyê nivîsand: “Çîn hewl dide ku cihê xwe qewîn bike, piştî derketina wan kêşeyan di navbera Iraq û Herêma Kurdistanê de, ji ber ku Iraq ligel pirraniya şîrketan teba ye û peyman ligel çend şîrketan betal kiriye.” New York Times dibêje ku reftara Herêma Kurdistanê ligel şîrketan, li gor reftara hikûmeta navendî, baştir e, lê hikûmeta Iraqê peymanên şîrketan ligel Herêma Kurdistanê neyasayî dibîne. Li gor heman rojnameyê, piştî dagîrkirina Iraqê ji aliyê Amerîkayê ve, şîrketên çînî, li gor şîrketên rojavayî, bi pereyekî kêmtir kar dikin, ji ber ku armanca Çînê bidestxistina petroleke zêdetir e, û ne qezenc e.

# Helandina hestiyan temen kurttir dike

Di temenê pîrbûnê de helandina hestiyan dibe sedema êş û têkçûna derûniya gellek mirovan. Piştî temenekî diyar yê mirov, maddeya kalsiyûm ya di nava hestiyan de kêm dibe. Encama vê yekê jî dibe zeîfbûn, jêçûn û kunbûna hestiyên mirov. Herwiha bi vê yekê hestî bi awayekî hesanî dişikin. Ev hemû hokar bi hevre ji hêla bijîşkî ve wekî helandina hestiyan tê nîşandan. Eger di dema xwe de ev nexweşî neyê tedawîkirin, mirov wê ji êşan xilas nebe. Lê belê bi tedawiya zû hem temenê mirov dikare dirêjtir bibe û hem jî heta astekê jiyana dikare rehettir bibe. Nîşanên helandina hestiyan, ango osteoporozê, êşa piştê, dest, mil û ya parsûyan e. Nîşana sereke jî êşa piştê ye.



Kesên bi nexweşiya helandina hestiyan dikevin, bi taybetî ji ber êşa piştê ya dijwar gazindê dikin. Herwiha kurtbûna bejna mirov jî nîşaneke giring ya vê nexweşiyê ye. Ji bilî wê, pirraniya caran pişta mirov kov dibe û namil jî gilover dibin. Piştî dijwarbûna vê nexweşiyê, êdî hestî dest bi şikestinê dikin. Ev şikestin ji ber tevger, ango livandineke biçûk jî, dikarin pêk werin. Bi vê nexweşiyê hem temenê mirov kurttir dibe û hem jî jiyaneke nexweş li benda mirov e. Ji bo pêşîlêgirtina vê nexweşiyê divê di zûtir dem de tedawî were pêkanîn.

# Bi destşuştinê pêşiya mîkroban bigirin



Bi hertiştê mirov dest didiyê ve mîkrob hene. Bi vî awayî jî mirov beyî ku hay jê hebe mîkroban li xwe kom dike. Ev yek jî dibe sedema nexweşiyên sivik yên mîna sermayê lê nexweşiyên cure yên giran jî. Pêşiya metirsiya mîkroban dikare bi destşuştina rojane were girtin. Bi taybetî destşuştina bi ava sarogermo û sabûnê nahêle ku mîkrob bibin sedema nexweşiyên pêgir. Ev yek ne tenê mirov ji nexweşiyên mûhtemel dûr dihêle, herwiha fêdeyê dide derûdorê jî. Ji ber destdayîna hev, ango merhebayê jî, mîkrob bi rêya dest ji destê kesekî derbasî destê kesê din dibin.

Herwiha neynûkên kurt û paqij jî di vî alî de xwedî roleke girîng in. Ji ber mîkrob xwe di bin neynûkan de jî vedişêrin. Pêşiya mirov destê xwe bişoyê, divê demjimêr û gustîlkên di destan de jî werin deranîn. Bi vî awayî dest wê baştir ji mîkroban paqij bibin. Li gor pisporan, pêwist e dest 30 çirkeyan bi sabûnê werin şuştin û piştre jî bi mexmelê werin ziwakirin. Bi vê yekê wê hem mirov bi xwe û hem jî derdor xwe ji mîkroban biparêzin

# Têrxewî neyarê krîza dil e

Di encama lêkolîneke zanyarên holendî de derket holê ku têrxewî pêşiya krîza dil digire. Lêkolîna ku di kovara tenduristiyê "The European Journal of Preventive Cardiology" de derketiye, cihekî berfireh daye vê babeta ku zanyaran li ser 15 hezar kesan pêkaniye. Li gor encama vê lêkolînê, kesên ku herşev 7-8 seetan radizin, rîska wan ya krîza dil ji sedî 83 kêmtir dibe. Herwiha mirovên ku bi awayekî saxlem dijîn, herdem werzişê dikin, cixareyê nakişînin û ji vexwarina alkolê dûr in, kêm bi nexweşiyên mejî dikevin. Ku têrxewiya herşev ya di navbera 7-8 seetan bibe parçeyek ji şêweya jiyana mirovên bi vî rengî, ev û gellek nexweşiyên din wê hêj kêmtir bibin. Ev şêwaza jiyanê herwiha mirina mirovan ya ji ber rijandina xwînê ya ser mejî jî kêmtir dike.




## Xaçepirs

**Çeperast: 1-** Bindestî, hêsîrî, koletî – Li Kurdistanê milletek. **2-** Heywanek koxê, şamik – Ne tije, tiştek tê de tune – Navtêdan, şabaş. **3-** Hunermendekî Kurd (berepaş) – Şaşbûyî, windabûyî, korê şevê. **4-** Qebûlkirin, temam – Hiştin, ji dest derxistin. **5-** Kesê yekem – Di dîroka Grekîyan de xwedayê evînê – Kîlogram. **6-** Êş, jan, şewat – Li Almanya kanalek televizyonê. **7-** Dengê bizin û karikan – Doktor, bijîşk. **8-** Girêdayî, pêve mayî. **9-** Di Tibbê de arkun, tabût – Nîjad, reng. **10-** Dîrok, çîrok, kevneşopî.

**Serejêr: 1-** Gîhayek ku ker jê hez dikin, gîhayê keran – Lîztikek 16 kevirî, xetxetî. **2-** Dînî, bawermendî – Dergevanê ber cehnemê, hût. **3-** Şik, guman, gazind – Niştiman, mesken, xak. **4-** Zibil, pîsîtî (berepaş) – Ji "Elî" re tê gotin. **5-** Ne mê, zilam, mêr – Hîç, qet (berepaş). **6-** Ava xurt, şelale, lehî – Gotina telefonê. **7-** Dirêjkirin, li erdê rastkirin. **8-** Bi Tirkî bajarê mezin – Strîyên dara, derzîyên darî. **9-** Made, mîde, ciyê xwarin lê kom dibe – Rêzewêne, nîşandana wêneyên li dû hev. **10-** Govendgêr, şahîgêr – Notayek muzîkê. **11-** Xwarina êvarî. **12-** Haydê, yalla, bimeş (berepaş). **13-** Gîha û nebatek xweş. **14-** Meha (9) nehan. **15-** Nîjad û koka Kurdan. **16-** Hilgirtin, ji bo hinekan birin.

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | | | | | | | | | ■ | | | | | | ■ | |
| 2 | | | | | ■ | | | | | | | ■ | | | | |
| 3 | | | | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 4 | | ■ | | | | | | | | | ■ | | | | | |
| 5 | | | ■ | | | | | ■ | | | | | | | | |
| 6 | | | | | ■ | | | | ■ | | | | | | | |
| 7 | ■ | | | ■ | | ■ | | ■ | | | | | | | | |
| 8 | | | | | | | | | | ■ | | | | | | |
| 9 | | | | | ■ | | ■ | | | | | | | | | |
| 10 | | | | | | | | | ■ | | | | | | | |

### Bersivên hejmara 211

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 | 13 | 14 | 15 | 16 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | B | E | R | B | E | R | Î | ■ | S | O | S | ■ | J | A | R | O |
| 2 | E | D | A | R | ■ | Î | R | N | A | ■ | E | S | A | R | E | T |
| 3 | R | A | D | A | R | ■ | O | ■ | C | M | K | ■ | H | Î | V | A |
| 4 | A | B | A | D | Î | N | ■ | Î | N | E | S | E | R | ■ | Î | N |
| 5 | M | ■ | N | E | Ş | A | N | D | I | N | | | | | | |
| 6 | B | A | ■ | R | E | Z | E | N | | Z | | | | | | |
| 7 | E | Z | A | ■ | B | Ê | B | A | V | Î | | | | | | |
| 8 | R | E | S | A | R | ■ | E | R | ■ | L | | | | | | |
| 9 | ■ | R | A | B | O | R | D | I | N | ■ | | | | | | |
| 10 | Ş | Î | N | ■ | Ş | ■ | Î | D | Û | M | | | | | | |



Rojbûn an jî şahiya te ye û tu jî dixwazî wêneyê xwe li vir bibînî? Ji me re bişîn: info@rudaw.eu

# Ronî hez ji ajotina bisiklêtê dike



Ronî sê salî ye û hê di vî temenî de hem bi zimanê kurdî û hem jî yê almanî gellekî baş dizane. Ew herwiha gellekî hez ji ajotina bisiklêtê dike. Lê dema Ronî bisiklêtê diajoyê, kumê ewlekariyê jî dide serê xwe. Ronî gellek caran bi xwişka xwe Nûdem re jî bisiklêtê diajoyê û bi taybetî dema ew jî pê re be, zêde kêf dike.

# BAZ



Baz nêçîrvanekî gellekî baş e. Ji ber ku li ezmên pirr baş difire, ew dikare pirr bi asanî li ezmên û li ser rûye erdê neçîrê bike. Li seranserê rûyê erdê 60 şêweyên bazan hene. Rengê wî û mezinbûna wî li gor şêweyên wî tê guhertin.

## Pêkenok





Mamoste li polê ji xwendevanan dipirse: Zarokno, li vir skeleta ajalekî heye, ka ji min re bêjin ev skeleta kîjan ajalî ye?
Zinar bi xwe bawer destê xwe radike: Skeleta ajalekî mirî ye.

## ZARDOKU





Bersiva ZARDOKU

### Şertên ZARDOKU

Tenê hejmarên 1 heya 6 bi kar bîne, lê nabe hejmarek du caran di yek rêzê de bê bikaranîn: ji çep ber bi rast, an jî ji jor ber bi jêr.

Li jêrê di navbera herdu wêneyan de 7 cûdayî hene. Hûn dikarin van cûdayiyan bibînin?



